# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar:21 20 - 26 Îlon 2014 basnews.com


## Mehmet Afşar

Ez di rêwîtiya afirandina nasnameyeke hunerî de me

R16



## Kurdî hat mohrkirin!

Dibistanên Cizîr û Gewerê bi hinceta ku li gor xala qanûnê ya 42. derqanûnî ne ji hêla Wezareta Karê Hundir ve hatin girtin. Piştî girtinê li pêşiya dibistanê çalakiyên şermezarkirinê hatin lidarxistin û mohra ku li deriyên dibistanê hatibûn xistin ji hêla gel ve hatin jêkirin. Piştî vê, di êrîşa polîsan de gelek kes birîndar bûn û gelek ji wan jî hatin girtin. Rûpel 03



## Li Semsûrê dema titûnê ye

Li vî bajarî û hin navçeyan, bi taybetî jî li navçeya Cêlika di mehên îlon û cotmehê de tiştê ku herî zêde tê firotin kêr, şûjin, derzî û mîk e. Wê li na zevî û ber deriyan bibe xîşte xîşta kêr û şûjinan. Destên tije birînên rêça kêran, tilî û bêçiyên qûl qulî yên ji ber pozikê şûjinan, şal û şewqeyên 8 koşe ku ji ber zexa titûnê reng diguherînin. Rûpel 07

## Pira Kurdistan û Ewropayê

Enstîtuya Kurdî ya Brukselê, di Cotmeha 1978'an de bi navê “Têkoşer – Yekîtiya Karker û Xwendekarên Kurd li Belçîka” ava bûye. Di Gulana 1989'an de, bi navê Enstîtûya Kurdî ya Brukselê nav guhertiye û ji aliyê wezareta çandê ya Belçîkayê ve, di çarçoveya “perwerdekirina gelemperî ya daîmî” de, bi awayekî fermî hatiye pejirandin û ji dewleta Belçîka alîkariya maddî distîne. Rûpel 11

# Ji serxwebûnê veger nîne




Barzanî hefta borî 3 rojan li eniya şer li gel Pêşmerge li kozikan çavdêriya eniyê kir û sihêtiya amadekariyên operasyonan kir. Barzanî got, “Divê herkes baş bizanibe ku tu kes nikare gem li vîna gelê me bixe. Em di serxwebûnê de bi israr in û ti carî dev ji mafê diyarkirina çarenûsa xwe bernadin.”

Barzanî serdana koçberên Duhokê kir û ji gelê heremê xwest ku alîkariya wan bikin û got ku wê berî zivistanê bi alîkariya navnetewî ji bo wan wargehan amade bikin. Barzanî got, "Em 100 hezar şehîdên din jî bidin, emê Şengalê rizgar bikin û hûnê vegerin malên xwe. Herwiha wê êrîşkar û xayîn bên cezakirin." Rûpel 02

## Bo ezdiyan seferberî

Piştî êrîşên DAİŞ'ê bi hezaran ezdî koçber bûn û liKurdistanê di qampan de hatin bicîhkirin. Lê belê piştî vê pirsgirêka xwarin, tenduristî, derman û sermayê derket. Bo çareserkirina van pirsgirêkan jî kurd li çar parçeyê Kurdistan û cîhanê seferber bûn û niha xebat û kampanyayên bo alikariya ezdiyan didomin. R.10

## Dergûşa dîrokê: Mîdyad

Mîdyad wek maketeke Rojhilata Navîn e. Bajar bi demoxrafya xwe cîhekî pirreng e. Heta salên dawîn li vê herema gelê suryanî, ermenî û kurd di nav hev de dijiyan. Li gor salnameyên kevn di serê sedsala 20an de ji sisêyan yekê şêniya heremê suryanî û ermenî bûn. Rûpel 08-09

## Yekbûna Başûr û Rojava mimkûn e

Di derbarê gihandina gaz û neftê ya deryayê, ‘Pêvajoya Çareseriyê’, Referandûm û bi şere li dij DAIŞ'ê ve giredayî daxwaza avakirina meqera leşkerî ya DYA'yê me bi siyasetmedar M. Emîn Pêncwînî re hevpeyvîneke kir. Pêncwînî agahiyên grîng da BasNûçe'yê û got: “Egeri heye ku di siberojeke nêz de mijara yekbûna Başûr û Rojavayê Kurdistanê têkeve rojeve û neft û gaza Kurdistanê bi ser Rojava re bigihîje deryayê. Rûpel 04-05



## Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî

# Ji serxwebûnê veger nîne

"Bi ti awayê em paş ve gav navêjin. Em tu carî dev ji mafê diyarkirina çarenûsa xwe bernadin. Bila kes li ser vî guhê ranekeve."

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ku hefta borî çûbû cem Pêşmergeyê eniya şer û koçberên ezdî daxwiyaniyeke girîng da. Barzanî diyar kir ku ew di mijara serxwebûnê de bi israr in û got; 'em dest ji mafê diyarkirina çarenûsa xwe bernadin.'

Mesûd Barzanî di civîna bi nûnerên koçberan re ku ji ber êrîşên DAİŞ'ê reviyabûn û li Duhokê bi cîh bibûn got ku 'me referandûma ku Kurdistanê dibe serxwebûnê neterikandî ye' Barzanî got di vê mijarê de bi israr in û waha pêde çû: "Dijminê me bi êrîşên li ser Herêma Kurdistanê hêvî dikin ku em dev ji daxwazên xwe yê meşrû û doza xwe ya azadiyê berdidin. Divê baş bizanibin ku ew nikarin gem li vîna gelê me bixin. Bi ti awayê em paş ve gav navêjin. Em tu carî dev ji mafê diyarkirina çarenûsa xwe bernadin. Bila kes li ser vî guhê ranekeve."

Barzanî hefta borî çû serdana Pêşmergeyên eniya şer û 3 rojan di kozikê pêş de ma. Barzanî derbarê eniya şer de agahî da û got ku DAİŞ nikare li hember Pêşmergeyan bisekine û neçar mane paş ve bikişin. Barzanî diyarkir ku; 'terorîst wê bi cezayê herî giran bên darizandin' û ji gelê Duhokê daxwaz kir ku bi sebir bin û alîkarê koçberan bin. Barzanî got; heta zivistan bê bi alîkariya civaka navnetewî ji bo koçberan cîhê mayînê û sitargehan durust bikin.

**"Kî xayîntiya Kurdistanê kiribe dê bê cezakirin"**

Barzanî destnîşan kir ku; dizanin rewşa koçberan dijwar e lê ev derbasdar e û di demek nêz de vegerin malên xwe. Barzanî di civîna nûnerê koçberên ezdî, şebek, şîa, tirkmen û mesîhî de waha axivî:

"Felaketa hatî serê we; hatî serê me teva serê tevayî Kurdistanê. Kesên li Şengalê û li cîhê din hatine kuştin û revandin birên min in. Me di vî şerê de 1200 şehîd dan. Ger em 100 hezar şehîdên din jî bidin, Şengal û cîhê din rizgar bikin û hûnê vegerin malên xwe. We xizmên xwe li paş hîşt, mal û milkên we talan bûn. Em ji vana hayedar in. Ku hûn vegerin gundên xwe, şarê xwe, we çi wenda kiribe dê cardin li we were vegerandin. 150 sal in kurd û ereb li van navçeyan bi hev re dijîn. Me îhtîmal nedikir ku ev ereb xayîntîkî waha bikin. Dixwaze ereb be, dixwaze kurd be kê ev xayîntî kiribe wê bê cezakirin. Destûra me tune ku kesên xayîntiyê li we, li Kurdistanê kiribe bi we re bijîn. Ku hûn vegeriyan malên xwe dê ev pirsgirêk hatibe çareserkirin. Ne tenê li Şengalê, li Zumar û li Mûsilê jî Pêşmerge destûr nade kes destdirêjiya kurdan bike. "

Barzanî hefta borî bi Berpirsiyarê Pêşmerge yê Herêma Şengalê, Qasim Şeşo re jî hevdîtin pêk anîbû û ji bo alîkariya wî ya parastina Şengalê ji serleşkerê ezdî re sipas kiribû. Di hevdîtinê de hatibû gotin ku; 'terorîst ji ber kiryarên xwe yên Şengalê û derdorê wî bê cezakirin û gel bi azadî vegerin malên xwe.' Şeşo jî gotibû ku destûr nadin terorîst xwe bigihînin ciyayê Şengalê û ji bo azadkirina Şengalê li benda fermana Barzanî ne.

**Peymana Belarûs-Kurdistanê**

Hefta borî di nav mêvanên Hewlêrê de, Wezîrê Karê Derve yê Rûsyaya Spî Vladimir Makey jî hebû. Di serdana Makey de biryar hat girtin ku di navbera herdû welatan de komîsyonek xebatê ya hevpar were sazkirin û peymaneke hevkariyê hat îmzekirin. Wezîrê Karê Derve yê Belarûsê got:"Ji ber rewşa niha ya Kurdistanê me hewcedarî dît ku em vir ziyaret bikin. Em hêvî dikin ku Kurdistan ji rewşa xwe ya niha rizgar bibe û xwe bigihîne rewşek aram." Di peymanê de mijarên; endustriel, çandinî, enerjî, teknolojî û perwerde cîh digirin. Di peymanê de mijarek din jî destpêkirina rêwîtiya hewayî ya di navbera Hewlêr û Mîskê de ye.



## Hollande: Em li cem kurdan in

Serokkomarê Fransayê François Hollande jî hat serdana Kurdistanê. Hollande li Firokxaneya Navnetewî ya Hewlêrê ji hêla Serokê Kurdistanê Mesûd Barzanî ve bi merasîmek leşkerî hat pêşwazî kirin. Barzanî û Hollande piştî civînê daxwiyaniyeke hevbeş dan.

Hollande got ku: "Alîkariya leşkerî û mirovî ya ji bo Kurdistanê wê berdewam be û divê ev ziyaret di tekoşîna li dijî terorîstên DAİŞ'ê de weke piştgirî were dîtin" Di berdewama axaftinê de Hollande wiha axivî "Alîkariya nav netewî pêk tê, ev nîşan dide ku hûn li dijî terorîstan ne tenê ne. Ji îro pê ve jî alîkariya me dê berdewam bibe. Herêma Kurdistanê mînakeke ku hemû netew û ol bi hev re di nav aştiyê de dijîn. Em destûr nadin ku teror vê dewlemendiyê têk bibe."

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî got: "Di têkbirina terorîstan de alîkariya Fransayê gelek girîng e. Ku ev hevkarî berdewam bike aştiya herêmê wê bête parastin. Bi alîkariya koalîsyona navnetewî, em terorîstan ji Iraqê paqiş bikin."

Heyeta Fransayê ku li gel Serokkomar Hollande herwiha Wezîrê Karê Derve Laurent Fabius û Wezîrê Paratinê Jean-Yves Le Drian jî hebûn bi xwe re ji bo koçberên Herêma Kurdistanê 15 ton alîkariya mirovahî anîbû. Hollande yekem serokdewlete ku hat serdana Hewlêrê.



## Dibistanên kurdî hatin girtin

# Kurd hene lê kurdî tune

Dibistanên kurdî ku di pêşengiya Kurdi-Der, TZP-Kurdî û Eğitim-Senê de li Diyarbekir, Cizîr û Gewerê hatibûn vekirin rojak piştî destpêka perwerdahiyê ji aliyî hêzên dewletê ve hatin girtin. Dibistana Seretayî ya Ferzad Kemanger bi hinceta ku "bê destûr hatiye vekirin" û "li ser navê rêxistinê tevdigere" hate girtin. Dibistanên Cizîr û Gewerê jî bi hinceta ku li gor xala qanûnê ya 42. derqanûnî ye ji hêla Wezareta Karê Hundir ve hat girtin. Piştî girtinê li pêşiya dibistanê çalakiyên şermezarkirinê hatin lidarxistin û mohra dibistanê ji hêla gel ve hat rakirin. Piştî vê careke din doraliyê dibistanê ji aliyê polîsan ve bi TOMA û wesayîtên zirhî hate girtin û gel li ber wan dibistanê bu xeleq. Piştî daxwaza palîsan a ku gel dibistanê biterikîne bicîh nehat, polîsan bi ava tazyik û bombeyên gazê êrîşî gel kir. Di êrîşê de gelek kes birîndar bûn gelek ji wan jî hatin destgirkirin. Herwiha dibistan cara seyem hate mohrkirin û li dora dibistanê rageşiya di navbera gel û polîsan de jî bi dawî nebûye.



**'Bi perwerdeya zimanê zikmakî kes ji hev nabe'**

Serokê şaxa Kurdî-Der'a Amedê Selahattin Gültekin di derbarê girtina dibistanan de got: "Niyetek me ya ku em welat dabeş bikin nîne, armanca me ew e ku kurd mafê xwe yê perwerdahiyê bi zimanê xwe bikin û em vê nîşan bidin."

Serokê şaxa Eğitim-Sen'a Diyarbekirê Yıldırım Arslan jî got: "Em bingeha vê xebatê ji peymanên navnetewî digrin. Xwasteka perwerdeya bi zimanê xwe jî xwezayî dibînin û em dibêjin ku rêvebiriya navendî gere van xwastekan li ber çavan bigire û asteng nek."

**Divê zarok asîmîle nebin**

Saliha Aydemir ku keça wê Zerya Aydemir'in (7) di dibistana Ferzad Kemanger de xwendekare e dibêje: "Em naxwazin pişaftina ku li ser me bû zarokên me jî di bin bandora xwe de bihêle. Dibistana bi zimanê zikmakî ji bo zarokên me firsendek mezine û ev mafê me ye."

**Kurd nikarin dibistanan vekin**

Berdevkê Hikûmetê û Alîkarê Serokwezîr Bulent Arınç di daxwiyaniya piştî civîna Lijneya Wezîran de got: "Di nav paketa demokratîkbûnê de xalên girîng hene. Di vir de hatibû gotin ku, di saziyên teybet de perwerdahiya bi kurdî bê dayîn û wek dersa hilbijartî jî bê dayîn. Lê bi awayekî din nabe." Arınç got ku vekirina dibistana provakasyon e û dibistanên bi kurdî nikare bê vekirin.

**Bê perwerdahiya bi kurdî pêvajoya çareseriyê nabe**

Serokê Giştî yê İHD'ê Öztürk Türkdoğan di derbarê vekirina dibistana de wiha got: "Kurdan ew dibistan wek sembol vekirin. Mafê perwerdahiyê nayê wateya perwerdehiya bi kurdî; bi zimanê zikmakî perwerde dîtin e."

**Armanc lîstika siyasî ye**

Parlementerê berê yê AKP'ê Abdurrahman Kurt îda kir ku sedema girtina dibistanan kurdîbûna wan nîne, ji ber ku bê rûhsat in û derveyî mevzûatê ne û wiha berdewam kir: "HDP bi gotinên "AKP dibistanên kurdî girtin" dixwaze pûanan bigre. Ev lîstikek hêsan ya siyasî ye. Armanca wan provakasyon e."

Rojnamevan Avni Özgürel jî di derbarê mijarê de wiha got; Zimanê dayîkê mafek e û di dema pêş de ev dê pêk bê û di pêvajoya çareseriyê de ne tenê vê mijar gelek mijarên din jî bi pirsgrêkî hatine bidestxistin. Ji naha de vekirina dibistanan zû ji dayîkbûn e û tiştên bi zorê zirar dide pêvajoyê." Özgürel got ku ev provokasyon e û dê Tirkiye van provakasyona derbas bike û pêvajoya demokratîkbûnê temam bike.

## Salvegera qetilkirina Dr. Şerefkendî

# Kujêrên Şerefkendî serbest in

Serokê PDK-İran Dr. Sadiq Şerefkendî bo beşdarî Enternasyonala Sosyalîst bibe li Berlînê bû û dixwest li wir bi endamên mixalefeta Îranê re hevdîtinan bike. Dê hevdîtin li restoranteke bi navê Mykonos ya Ezîz Gaffarî'yê îranî bibûya.

Îstîxbarata Îranê hay ji Şerefkendî hebû ku dê were Berlînê û ji bo wê jî komek bo kuştinê şandibû wir. Berpirsê komê Abdulrahman Banihaşemî bû nasnavê wî 'Şerîf' bû. Banihaşemî bi Abbas Rayyal, Yusuf Amin, Muhammed Atris'ê Lubnanî re ket têkiliyê û di 17'ê Îlona 1992'an de saet di dora 22.50'an de çalakiya kuştina Şerefkendî pêk anîn. Li ser maseya Şerefkendî 8 kes hebûn û di êrîşê de ligel Şerekkendî Berpirsiyarê Ewrûpayê yê PDK-İ'yê Fattah Abdolî, Berpirsiyarê Elmanyayê Homayoun Ardalan û Mixalîfê Îranî Nurî Dehkurdî jiyana xwe jidestda.

Hemû serokên Rojhilat hatin qetilkirin

Ku meriv li çîroka serokên Rojhilatê Kurdistanê binêre, tişta ku derdikeve pêş kuştina wan ya li ser maseya hevdîtinê ye. Li Îranê kuştina mixalifa bûye çandeke ku ji demên berê tê. Ksenefon di pirtûka xwe ya bi navê 'Vegera Dehazaran' de dibê, qralê farisan serleşkerên yewnaniyan vexwandiye konê xwe û daye kuştin. Ew çand di kilamên dengbêjan de jî derdikeve pêşberî me ku serhildêrên kurd piştî serhildana Agiriyê derbasî Îranê dibin, dewlet ji wan daxwaz dike ku çekê xwe deynin û destbi hevdîditinan bikin, lê pişt re wan dikuje. Ew kiryarên Îranê herî berbiçav di kuştina Dr. Abdulrehman Qasimlo de derdikeve holê.

Ji wan kesan yek jî Şerefkendî ye ku ji hêla dewleta Îranê ve bi siûkastê hate kuştin. Şerefkendî; di 21'ê Çileya sala 1937'an de li Bokanê ji dayik dibe. Di temenê xwe yê biçûk de bavê xwe wenda dike. Di zaroktiya xwe de bi birayê xwe re dibe şahidê avakirina Komara Kurdistanê li Mehabadê û ew bandorek mezin li ser dike. Şerefkendî piştî xwendina li Bokanê derbasî Mahabadê dibe û ji wir jî derbasî Tebrîzê dibe. Di 1959'an de li Tehranê destûrnameya endezyariya kimyayê digre. Çend salan li bajarê Kurdistanê kar dike lê ji ber ku bi xortên kurdan re eleqedar dibe ji hêla rejîmê ve tê sirgûnkirin. Şerefkendî di 72'an de diçe Fransayê perwerdeya xwe li vir didomîne. Şerefkendî li vir Qasimlo nas dike û bi awayekî dibe endamê PDK-İ'yê. Piştî têkçûna rejîma paşayetiyê û destpêkirina eşkere ya PDK-Î li Îranê, ew dibe Berdevkê Komîteya Navendî yê Partiyê û di meha Reşemiya sala 1979'an de jî di Kongereya 4. ya Partiyê de dibe endamê Komîteya Navendî ya Partiyê û berpirsiyariya partiyê ya Tehranê dispêrin wî. Şerefkendî di sala 1991'an de bû sekreterê giştî yê PDK-İ'yê.



Doza kuştina Şerefkendî hetanî 10'ê Avrêla 97'an 246 caran hat dîtin û du kesan cezayê muebbetê girt, ev ceza vegeriya 23 sala, yekî 11 sal ceza girt û yek jî hat berdan.

## Pêncwînî:

# Yekbûna Başûr û Rojava mimkûn e

**"Xebatên ku ji bo kongreya netewî hatibûn destpêkirin didomin. Serok Barzanî vead kiribû ku kongre pêk were û wê li ser soza xwe bisekine."**



**Rawîn Stêrk**

Di vê pêvajoya ku geşedanên mezin û grîng diqewimin û rewşa kurdan, rojeva cîhanê diyar dike. Li Rojava bi, geşedanen 3-4 salên dawî yên li Sûriyeyê û li Başûr ji çend mehan bi şûnve bi geşedanên li Iraqê re girêdayî, xurtbûn û êrîşkirina DAIŞ'ê şansên ku dikarin sibaroja kurdan diyar bikin derketin holê. Her çiqas ji bo kurdan ev pêvajo bi êşên dijwar bimeşe jî, ger ku kurd siyaseteke baş û bi rêkûpêk bimeşînin pêşiya kurdan vekiriye. Yek ji van şansên ku di nav kurdan de pir caran bi bêdengî tê niqaşkirin jî gihandina gaz û nefta başûr a deryayê ye. Ji bo vê armancê jî rola Rojava û avakirina frokexaneya başûr derdikevin pêş. Di derbarê gihandina gaz û neftê ya deryayê, 'Pêvajoya Çareseriyê', Referandûma Serxwebûnê û bi şere li dij DAIŞ'ê ve giredayî daxwaza avakirina frokexaneyeke leşkerî ya DYA, me bi siyasetmedar M. Emîn Pêncwînî re hevpeyvînekê kir. M. Emîn Pêncwînî agahiyên grînd da Rojnameya me û got: "Egeri heye ku di siberojeke nêz de mijara yekbûna Başûr û Rojavayê Kurdistanê têkeve rojeve û neft û gaza Kurdistanê bi ser Rojava re bigihîje deryayê.

***Tê gotin ku DYA dixwaze li başûr frokexaneyeke leşkerî ava bike, ger ev rast be wê bandoreke çawa li Herêma Kurdistan bike?***

Belê rast e, DYA, ji Rêveberiya Herêma Kurdistan daxwxaza avakirina frokexaneyek leşkerî kiriye. Ev, tişkekî pir grîng e û ev frokexane dikare ji bo siberoja Kurdistan bibe spartekeke bingehîn. Li Başûrê Kurdistan tu kes an jî aliyên ku naxwazin frokexaneya DYA bê avakirin tune ne. Yanî li dij vê daxwaza DYA muxalefet tune. Wê Îran ji vê yekê nerazî be û dibe ku Hikûmeta Navendî ya Iraqê jî ji vê yekê kêfxweş nebe. Lê belê di nav kurdan de li dij vê helwestê muxalefet tune. Helwesta Iraqê ne diyar e. Ji ber ku di siberojê de li Kurdistan hebûna frokexaneyeke bi vî rengî ji bo berjewendiyên Bexdayê wê cihê xeteriyê be, wê Iraq nexwaze ev frokexane bibe frokexaneyeke mayin de. Lê belê di vê pêvajoyê de wê Iraq li dij avakirina vê frokexaneyê dernekeve; lewre wê bi vê frokexaneyê hêzên DAIŞ'ê bêne bombebarankirin û ev yek ji bo Bexdayê jî tiştekî erênî ye.

***Çima DYA dixwaze frokexaneya Încîrlikê betal bike û li Kurdistan frokexaneyeke nû çêbike?***

Sedemê vê yekê bêdengiya Tirkiye ya ji bo şerê li dij DAIŞ'ê ye. Ev daxwaza DYA'yê tê wateya ku baweriya DYA bi Tirkiyeyê nemaye. Tirkiye li Rojhilata Navîn helwesteke ku DYA jê ne razî ye pêk tîne. Tirkiye daxwazên DYA û dewletên Ewropa yên ji bo tekoşîna li dij DAIŞ'ê qebûl nekir û bêdeng ma. ji ber vê yekê DYA kete nav hewldaneke wisa ku li Hewlêrê frokexaneyeke leşkerî ava bike. Xaleke din ku DYA kete nav vê hewldanê jî ev e: Di dest DYA de belgeyên mîsoger hene ku bi ser Tirkiye ve alîkarî ji terorîstên DAIŞ'ê re diçe û Tirkiye di warê lojîstîk de navendeke herî mezin e ji bo pêdiviyên DAIŞ'ê. Ji bo DYA baregeheke hewayî ku dikaribe êrîş bibe ser DAIŞ û wê bombebaran bike frokewaneyek pêwîst e û ji ber ku Tirkiye siyaseteke ne baş dimeşîne DYA hêviya xwe ji Tirkiye birî ye. Ji ber van sedeman DYA xwest ku li Herêma Kurdistan frokexaneyek leşkerî ava bike. Ev yek ji bo kurdan rewşeke nû, erênî û baş e. Ev geşedan tê wê wateyê ku li gor salên borî, bandora DYA li ser Tirkiye kêm bûye û ji ber vê yekê baweriya DYA bi Tirkiye nemaye. Eger başûr biryar bide û referandûm bike û serxwebûna xwe îlan bike, wê ev frokexaneya DYA ji bo Kurdistan bibe hêzeke mezin.

Ji ber ku di şerê li dij DAIŞ'ê de Tirkiye bêdeng ma, hemû kurd û bi taybetî jî kurdên Başûr dibêjin 'Tirkiye em frotin' Di nav kurdan de ev hişmendî belav dibe ku Tirkiye ji bo berjewendiyên xwe û ji bo neft û gazê têkiliyên xwe bi Herêma Kurdistan re geş kiriye. Lê belê bêdengiya wê ya di mijara DAIŞ'ê de, niyeta Tirkiye ya di derbarê kurdan de aşkera kiriye. Gelê Başûr û her wiha Hikûmet û serkirdayên hikûmetê jî êdî vê yekê dibêjin ku baweriya wan bi dewleta tirk nemaye, çimku dewleta tirk ew frotine terorîstan.

**"Pêşmerge li Kurdistanê pêşiya DAİŞ'ê girt û êdî ne parastin, êrîşkirina Pêşmerge pêk tê. Armanca DAİŞ'ê ya niha dîsa Kobanê ye."**

***Li eniyên şerê li dij DAIŞ'ê rewş çi ye?***

Li eniyên şer ên Şengal, Mûsil, Xaneqîn, Celewla, Kerkûk û cihên din tekoşîna li dij DAIŞ'ê dom dike û Pêşmerge êdî dev ji berxwedanê berdaye û êrîş dibe ser DAIŞ'ê da ku wê ji Kurdistan derxîne. Pêşmerge di eniya Mûsilê de serkeftinên mezin bi dest xistiye û DAIŞ'ê hêdî hêdî paş ve dikişe. DYA bi frokeyên xwe yên şer baregeh û hêzên seyyar en DAIŞ'ê bombebaran dikin. Ev bombebarankirinên frokeyên şer ji bo Hêzên Pêşmerge dibin sedemên moral û bi vê moralê Pêşmerge di şer de çalaktir dibe. Bi vê hevkariyê DAIŞ roj bi roj têk diçe û paş ve dikişe. Li eniya Xaneqîn, Celewla û Kerkûkê jî Pêşmerge serkeftinên baş bi dest dixe. Mintiqa Çiyayê Efrîn ketiye destê Pêşmergeyên Kurdistan. Bi nêrîna min heta meheke din DAIŞ li Herêma Kurdistan namîne û wê ber bi rûxandinê ve biçe.

**Niha armanca DAIŞ'ê Kobanê ye**

Şerê mezin ê DAIŞ'ê û kurdan li Rojavayê Kurdistan ye û şer li wê herêmê hin berztir dimeşe. Niha DAIŞ'ê li Kobanê, ji çar aliyan ve êrîş biriye ser PYD'ê. Ev 4 roj in li Rojavayê Kurdistanê şerekî pir giran heye. DAIŞ, bi çekên giran êrîşî Kobanê û Qamişlo dike. PYD'ê daxwaz ji hemû kurdên çar perçeyên Kurdistan kiriye ku li hember DAIŞ'ê alîkariya Rojavayê Kurdistanê û bi taybetî jî alîkariya Kobanê û Qamişloyê bikin.

**Çekên giran ketine destê Pêşmerge**

Çekên ku ji DYA û dewletên din ên Ewropa û dinyayê yên ji bo alîkariyê gihîştine Pêşmerge û ji ber vê yeke moralê Pêşmerge pir baş bûye. Hemû Ewropa; ji Almanya, Îtalya, Îngiltere, ji Kanada û gellek dewletên din çekên giran hatine ketine destê Pêşmerge û bi van çekan Hêzên Pêşmerge hin xurttir bûne û li dij DAIŞ'ê serkeftinen mezin bi dest xistine. Bi hatina van çekan hêvîdariya aştî û aramî ya niştecihên herêmê berz bû.

***Referandûm di çi rewşê de ye? Gelo amadekarî têne kirin?***

Wê referandûma serxwebûnê bê kirin. Amadekariyên referandûmê dom dikin û yasaya pêkanîna referandûmê ji alî Parlemana Herêma Kurdistan ve hatiye pejirandin. Egerî heye di cotmeh an jî mijdara îsal de referandûm bê kirin. Hin arîşeyên navbera Hikûmeta Navendî û RHK hê nehatine çareserkirin. Babetên budçe û mûşeyên pêşmergeyan nehatine çareserkirin û divê bêne çareserkirin. Ez wa bawer dikim ku piştî şerê DAIŞ'ê wê li Herêma Kurdistan referandûm çêbibe û wê kurdistan serxwebûna xwe îlan bike.

**"Ji ber ku li hemberî DAİŞ'ê Tirkiye Kurdistan bi tenê hişt, niha herkes dibêje Tirkiye em firotin. Ew jî nîşan dide ku di pêşeroê de li ser yekitiya Rojava û Başûr dê nîqaş bêne kirin. Dibe ku di dahatûyê de neft û gaza Kurdistanê bi ser Rojava re bigihîje deryayê."**

***Xebatên Kongreya Neteweyî di çi atê de ne?***

Li ser Kongreya Neteweyî jî xebat hene lê belê ev mijar bi geşedanên siyasî ve têkildar e. Li alîkî gelê başûr û Herema Başûr li dij DAIŞ şer dimeşîne, li aliyê din arîşeyên navbera RHK û Rêveberiya Navendî yên siyasî û aborî hene her wiha arîşeya gaz û neftê heye. RHK 3 meh qewl daye hikûmeta Îbadî ji bo arîşeyên Hewlêr û Bexda çareser bike. Eger ev arîşe bêne çareserkirin wê pêvajoya referandûmê bimeşe û wê li başûr referandûma serxwebûnê pêk bê.

***Têkiliyên navxweyî yên hêzên kurdistanî çawa nin?***

Ji ber vê rewşa awarte hemû bi yek vîn û daxwazî tevdigerin. Hemû hêz û tevgerên kurd ên siyasî û ne siyasî ên başûr û bakur û rojhilat û rojava li hember DAIŞ'ê bi yek dengî têdikoşin û şer dikin. Li başûr, çi YNK, KDP, Tevgera Goran, Hêza Îslamî û rêxistin û partiyên din li hember Hikûmeta navendî yek deng in. Li hember DAIŞ û Hikûmeta Navendî gotin û helwesta wan yek e. Di nav wan de cûdahî tune. Tenê ji bo rêbazên pêşxistina Herêma Kurdistan cûdahiyên ramanî hene û di nav ev çend hêz, partî û tevgeran de cûdahiyên bi vî rengî tiştekî asayî ye.

***Têkiliyên PKK û hêzên başûr di çi rewşê de ne?***



Li ser mijara Rojava, li ser mijara pêvajoya çareseriyê û li ser hin mijarên din rayên PKK û hin hêzên başûr li hev nagoncivin. Lê ez teqez dikim ku ev ray û ramanên ji hev cûda ên di navbera PKK û partiyên başûr rê li ber arîşeyên mezin veke. Bi nêrîna min ev cûdahiyên hanê astengiyan li pêşiya berjewendiyên neteweyi dernaxin. Lê muxalifên hev in û ev jî tiştekî asayî ye.

***Ger ku Bexda daxwazên kurdan bi cih bîne wê îlankirina serxwebûnê bê taloqkirin?***

Niha hêza Bexda ku pê dikaribe gefan li kurdan bixwe tune ye. Herêma Kurdistan di destê kurdan de ye û hindek axa Iraqê di bin dagirkeriya DAIŞ'ê de ye. Her roj li Iraq şer û teqîn hene û Bexda niha pir lawaz e. Ji ber vê rewşa xwe Hikûmeta Navendî nikare li hember daxwazên kurdan astengiyan derxe. Niha hêza siyasî û hêza leşkerî ya RHK û Pêşmerge xurttir e ji ya Hikûmeta Navendî.

***Ger ku Hikûmeta Navendî van daxwxazan bi cih neyine wê çi bibe?***

Wek min got, kurdan 3 meh qewl daye hikûmeta Îbadî. Eger ev daxwazên wan bi cih neyînin wê Iraq bibe 3 parçe û dibe ku konfederaliyek ku ji kurd, şîa û sunneyan pêk tê çêbibe. Lê di derbarê vê mijarê de kurdan rêgeha xwe ya serxwebûnê anîne ziman. Ji niha ve mirov nikare li ser siberoja vê mijarê pêşbîniyên teqez ragihîne. Li gor geşedanên piştî wî qewlî mirov dikare tiştên ku dikare bibe bibêje.

***Ji bo îlankirina serxwebûna Kurdistan mirov dikare bêje cîhan an jî aliyên Rojhilata Navîn hatine qanikirin?***

Piraniya dewletên cîhanê û bi taybetî jî DYA, Ewropa û hin dewletên Rojhilata Navîn piştgiriya serxwebûna Kurdistan dikin. Her çiqas heta niha di daxuyaniyên xwe de ragihandibin ku ew naxwazin Irarq bê dabeşkirin jî, lê piştî şerê DAIŞ'ê û piştgiriyên siyasî û alîkariyên çekan didin xuyakirin ku serxwebûna Kurdistan dipejirînin. Yanî geşedanên van sê mehên dawî didin xuyakirin ku wê kurd jî wek neteweyeke serbixwe wê beşdarî li neteweyên din ên serb xwe bikin.

***Têkiliyên Rojava û Başûrê Kurdistan di çi rewşê de ne?***

Rastî ev e ku gelê Rojava û Başûr xwe yek gel dihesibînin. Wek em dizanin piştî êrîşa DAIŞ'ê ya li ser Şengal û derûdora wê û jenosîda li ser ezdiyan YPG rolekî grîng û dîrokî leyist û gellek ezdiyên Şengalê parast û ew derbasî Rojava kir. Korîdoreke mirovî vekir û ezdiyên ku di Çiyayê Şengalê de ji alî DAIŞ'ê ve hatibûn asêkirin derbasî rojava kir û sed hezar mirovên kurd ji mirinê xelas kir. Ev yek jî dide xuyakirin ku gelê başûr û rojava xwe yek gel dihesibînin. Hêvîdarim ku siyasî û serkirdayên kurdan jî bi wê helwestê hevalbendiya hev bikin.

***Di siberojê de egerî heye ku parçeyên başûr û rojava bibene yek?***

Egerî heye ku doxê braderiyê çêbibe di navbera rojava û başûr. Lê ez dixwazim vê yekê bêjim. Ez vê yekê grîng dibînim; Ger ku ev rêbaza DYA pêk bê û gaz û nefta Kurdistan bigihîje deryayê. Ger ku rêgeha bi ser rojava ve arastekirina gaz û nefta başûr ji derya û ji wir ve jî li dinyayê belav bibe, wê gavê di warê aborî û siyasî de we kurd serxwe bibin. Ji ber vê yekê ev rewşa niha ji bo gelê kurd û Kurdistan şanseke pir mezin e ku siyaseteke baş vê pêvajoyê bi rê ve bibin. Ji bo vê yekê jî divê kurd yek bin, di warê berjewendiyên neteweyî de yek bin, di warê xwedîlêderketina çandê de yek bin û di warê xîretkêşî û parastina nirxên kurdayetî yek bin.

## Hewlêr li benda Bexdayê nasekine

***Hikûmeta Navendî ya Iraqê ya Nû hate damezirandin, gelo daxwazên aliyê kurd ji hikûmeta nû çi ne?***

Çar xalên sereke yên daxwazên kurdan ji Hikûmeta Navendî ya Iraqê ya Nû hene. Xala yekem ev e ku kurd ji hikûmeta navendî û ji Parlemana Iraq dixwazin ku yasayên neft û gazê yê ku pê dikarin bi serê xwe neft û gazê bifroşin bê pejirandin. Xala duyem mijara para ji % 17 ji budçeya navendî ya mafê Herêma Kurdistan e. 6 meh in ku hikûmeta navendî para Herêma Kurdistan nade. Divê ev arîşe bê çareserkirin. Xala sêyem jî mijara Pêşmerge ye. Li gor yasayên Destûra Iraqê, Pêşmerge beşek e ji artêşa Iraqê. Li gor wê yasaya destûrê divê her çekên ku di destê artêşa Iraqê de heye bide Pêşmerge jî. Her wiha wek hemû endam û peywirdarên artêşa Iraqê divê mûşe û pereyên Pêşmerge jî bidine Pêşmerge. Xala çarem jî yasaya 140 a destûra Iraqê ye ku li ew bajar û navçeyên ku nîqaş li serê têne kirin referandûm bêne kirin da ku şêniyên wan bajar û navçeyan hilbijêrin ka wê bi RHK ve bêne girêdan yan bi Rêveberiya Navendî ya Iraq ve bêne girêdan. Divê yasaya 140 a destûra Iraqê bê pêkanîn. RHK 3 meh qewl da Hikûmeta Navendî. Eger di navbera 3 mehan de ev çar xal bêne bi cih bên di navbera RHK û Hikûmeta Navendî de arîşe namînin, lê eger neyêne bi cihkirin we demê wê rewşa siyasî ya Iraqê biguhere.

Roşan Lezgîn

## Perwerdeyê kurdî

# Kurdkî wazenê



Derheqê ziwanî de merdim çiqas binuso zî tay o. Çunke meselaya ziwanî mîyanê ma kurdan de birînêka xorîn û gonin a, derdêko bêderman o.

Ma çiqas nusenê, çiqas ser o vindenê, kurdê ke musayê tirkî û asîmîle bîyê zî hende na mesela ra remenê, xo dûr danê, xo kerr kenê. Kurdê ke asîmîle bîyê, musayê tirkî, apey ageyrayîşê înan, newe ra musayîşê kurdkî (kirdkî, kurmancî) zehmet o. Hetêk ra zî bi vîndîkerdişê kurdkî hîssîyatê kurdîtîye ra dûr kewtê, êdî gonîya înan seba kurdkî nêgirêyena. Coka nê kesî herçiqas îdeolojî, fikir û teorî de xo kurd bivînê zî pratîk de hetê tirkbîyayîşî ser şinê.

Kurdistanê vakurî de exlebê sîyasîyê kurdan kesê çepgîr ê, mektebanê tirkan de wendo, çerxê fikrê Kemalîzmî ra vîyartê, kurdkî ra dûr kewtê, ziwanê înan tirkî yo. Sîyasetê kurdan hetê nê tewir kesan ra îdare beno. Coka sîyasetê kurdan caran bi hawayêko cidî û samîmî meselaya ziwanî ser o nêvinderto, seba ziwanî tu polîtîkayêka raste nênaya ro. Esas, derheqê ziwanî de tu polîtîkaya kurdan çin a.

Heto bîn ra, tu çîyêk qasê ziwanî nêbîyo malzemeyê sîyasetê kurdan. Yanî sîyasetê kurdan hem wayîrîya ziwanî nêkeno hem zî ziwanî zaf suîstîmal keno. Sîyasetê kurdan hertim ziwan sey imajêk ke pê sîyasetê xo meşrû bikero dîyo. Mesela, hertim vate û nuşteyanê sîyasîyan de behs beno ke ziwanê kurdkî qedexe yo, ganî dewlete qedexeyê ke nayo ziwanî ser hewano.

Helbet no waştiş bi edayêka turîstîke îfade bîyo. Yanî sîyasetê kurdan seba ke kurdkî qisey bikero, nêvato wa qedexeyê kurdkî ser o hewanîyo, tena seba ke qedexe esto wina vato. Sey nimûneyî, hetanî tîya ra di serrî verê cû zî qedexe bi ke endamê partîyanê sîyasîyan mitîngan de tirkî ra teber bi yewna ziwan xîtabê şarî bikerê. Sîyasîyanê kurdan hertim vatêne sîyaset de kurdkî qedexe ya, wa no qedexe hewanîyo. Axir qedexe hewanîya la kesî kurdkî qisey nêkerd!

Nê hîrê serrî yê ke dewleta tirkan bê ke behsê nameyê kurdkî bikero yew îmkano qijkek dayo: domanê ke sinifê 5, 6, 7 û 8. de wanenê, eke biwazê eşkenê hewte de di saetî dersa kurdkî (zazakî, kurmancî) bivînê, kurdkî bimusê. Helbet dewleta ke no heq naskerdo samîmî nîya, nêwazena kes nê heqî ra zî îstîfade bikero. La çîyo ecêb sîyasetê kurdan zî nêwazeno kurdî nê heqî ra îstîfade bikerê. Vanê, ma perwerdeyê bi kurdkî wazenê, no heqo qijkek çi yo ke ma tenezul bikin. Labelê zaf eşkera yo ke waştişê perwerdeyê bi kurdkî de zî samîmî nîyê. Ez wina bawer a, eke ewro dewleta tirkan vajo ma perwerdeyê bi kurdkî qebul kenê, sîyasetê kurdan do yewna çî bikero behane û nêverdo kurdî ci ra îstîfade bikerê.

**Vakur de sîyasetê kurdan çîyo ke mumkin o, çîyo ke faydeyê kurdan tede esto tim bi behaneyêk red keno. La çîyo ke mumkin nîyo yan zî zaf erey do bibo, dekeno rojevê kurdan, bi no qayde kurdan meşgul keno. Kilmê mesela, bi no qayde roj bi roje, gam bi game kurdan kurdîtîye ra dûr fînenê û entegreyê tirkan kenê. Çîyo ke hetanî nika bîyo naye ra wetêr tu çîyêk zî nîyo. Hende gonîya domananê kurdan bîlasebeb koyan de rişîya, hende kurdî bîlasebeb heps û zindan de puyayî, kurdan bîlasebeb hende ezîyet û cefa, hende sefalet dî.**




Sîyasetê kurdan seba ke xo tetmîn bikero, seba ke nîşan bido ke wayîrîya ziwanî keno, her serre, wexto ke mektebî abenê, vanê, wa wendekarî di hewteyanê verênan de mekteban boykot bikerê. Tena wina vanê û vîyarenê. Faydeyê xo çiqas beno, senî beno, qet îzeh nêkenê. Xora boykot zî nêbeno. Eke bikerê zî tu faydeyê xo çin o, çunke di hewteyanê verênan de xora dersî çin ê. Zafê domanan şinê mekteb, seba ke dersî veng ê, apey yenê, yan zî hewşê mektebî de tope kay kenê.

Ma ferz bikin, dersî estbê zî yew doman di hewteyî boykot bikero û dima ancî şiro mekteb, çi manaya xo esta? Kam naye ra zerar vîneno? Tena doman zerar vîneno, çunke dersan ra apey maneno. Mi gore sîyasetê kurdan bi na kerdene, yanî bi boykotkerdişê di hewteyanê verênan yê perwerdeyî tam tinazê xo bi kurdan keno.

Nika vanê, ma bi xo mekteban akenê, nê mekteban de bi hawayêko gayrî-resmî perwerdeyê bi kurdkî danê. Mi gore no karêko qet cidî nîyo, vernîya xo çin a. Çira? Çunke sîyaseten vanê ma seba kurdan dewlete nêwazenê, tena ma wazenê ke Tirkîya demokratîk bo. Vanê ma hereketêko Tirkîyeyî yê, meclisê Tirkîya meclisê ma yo, unîterîya Tirkîya rê hurmetê ma esto. Vanê, ma nêwazenê kurdî tirkan ra cîya bibê, tu problemê ma tirkan û beyreqa tirkan reyde çin o, ziwanê tirkî ziwanê ma yo resmî yo. La dewe de, mavajin ke dewa Licê Kerwes de, cayêko tenha de bîna viraşta ke tede bi kurdkî perwerde bidîyo. Seke aseno, no proje û polîtîkaya înan pênêgênê. Eke bivatêne ma tirkan ra cîya benê, eywelah, zaf mentiqî bi ke perwerdeyê xo zî cîya bikerdêne. Û neke tena yew mekteb, ganî her ca de mektebê kurdkî awan bikerdêne.

Ma vajin ke çend mektebê gayrî-resmî şeklê kursan de abibê, kam do fek mektebanê resmîyan ra verado û domananê xo bişawo nê mekteban? De mi dî vernîya her kesî de serek û giregiranê sîyasetê kurdan domanê xo mektebanê tirkan ra girewtî şawitî nê mekteban!

Vakur de sîyasetê kurdan çîyo ke mumkin o, çîyo ke faydeyê kurdan tede esto tim bi behaneyêk red keno. La çîyo ke mumkin nîyo yan zî zaf erey do bibo, dekeno rojevê kurdan, bi no qayde kurdan meşgul keno. Kilmê mesela, bi no qayde roj bi roje, gam bi game kurdan kurdîtîye ra dûr fînenê û entegreyê tirkan kenê. Çîyo ke hetanî nika bîyo naye ra wetêr tu çîyêk zî nîyo.

Hende gonîya domananê kurdan bîlasebeb koyan de rişîya, hende kurdî bîlasebeb heps û zindan de puyayî, kurdan bîlasebeb hende ezîyet û cefa, hende sefalet dî.

Gama ke merdim ewnîyeno tarîxê ziwanê nuştekî yê kurdkî ra, baş aseno ke heme lehçeyê kurdkî hertim bi destê şexsan aver şîyê. Bar ancî barê milê ferdanê kurdperweran o. Homa quwet bido kesanê milîyetperwer û xeyretkêşan.






# Li Semsûrê dema titûnê

Zerya Semsûrî

Li vî bajarî û hin navçeyan, bi taybetî jî li navçeya Cêlika di mehên îlon û cotmehê de tiştê ku herî zêde tê firotin kêr, şûjin, derzî û mîk e. Wê li na zevî û ber deriyan bibe xîşte xîşta kêr û şûjinan. Destên tije birînên rêça kêran, tilî û bêçiyên qûl qulî yên ji ber pozikê şûjinan, şal û şewqeyên 8 koşe ku ji ber zexa titûnê reng diguherînin. Belê li Semsûrê dema çinîn û berhev kirina titûnê ye. Piştî ked û xebata 4 mehan li nav zeviyan çiloyên titûn êdî zer û spî bûne û kamilî li tayên titûn xemilî ye. Divê beriya şilî û şepeliyan gundî û êxsîlên di nava çiyayên bilind de çiloyê dawî yên titûnê jî bavêjin malê da ku li nava erdan zayî nebe. Li gundên deştê ji ber ku titûn bo saziya dewletê TEKELê tê çandin rakirina wî hêsantir e, bo wan xem nîn e baran û şilî. Lê ji bo gundên çiyayî û şêniyê Cêlika mehên îlon û cotmehê mehên mirin û mayînê ne. Di rojên van mehan de mirî li erdê dimîne, destên bûk zavayan hinnekirî dimînin, lê nabe ku titûn li nava zeviyan bimîne. Ew risq û zeqîreya zav û zêçan e, divê qezenc li erdê nemîne. Tevî ku di salên dawî de bo avdan, xetkirin û derman avêtinê hin melzeme derketine û barê rêncberan hinekî sivik kiriye jî, di dema çinînê de her tişt bi kefên destan, bi nêynûk û tiliyan divê. Bo vê ne zarok, ne kal û pîr û ne jî nexweş dimînin li malê. Berê her kesî li zeviyan e û destê herkesî bi zex e. Zex qilêra titûn, titûn tijîbûna kîler e ji karker û rêncberan re. Di vê mehê de pêyvek heye ku li van gundan pir bi kar tê: “Welleh em li meriyekî darinî digerin…” ewqas ku xebat divê û rakirina qezencê divê.

Ji ber ku, heke li nava zeviyê şilî li titûna kamilbûyîkeve, wê rengê wî reş derkeve û pere nake. Heke ku piştî çinîn û pêvekirinê di qaman de bi tavê hişk nebe û bikeve şiliyên payîzê wê titûn dîsa bi têra xwe zer nebe û bê pere here. Di van mehan de ne xew heye û ne jî razan û bêhn vekirin. Carina bo ku xew neyê, hin gundî li dermanxaneyan dermanê bê xew manê jî dipirsin, lê mixabin nîn e dermanê bê xewiyê. Heya, carekê li gundekî eşîra Kêw, rebenek diçe dermanxaneyê û ji dermanê bê xewiyê dipirse. Hin pêyv bi tirkî û hin bi kurdî derdê xwe vedike ji derman firoş re. Lê malxirabê dermanfiroş xelet famdike û tu nabêjî dermanê xew û razanê dide feqîro. Piştî ku belangazê me vedigere malê, dibîne ku titûna di exinê de zer bûye û heke ku nayê pêvekirin wê zer bibe. Divê heta serê sibê ew exin ji erdê rabe. (dema ku titûn çilo bi çilo ji kokê tê jêkirin, bo ku zer bibe li ciyekê talde didin paş hev û 3 rojan wiha dimîne. Pişt re jî rengê wê wek mişmişa Meletiyê zer dibe. Ji vê re exin tê gotin.) piştî xwarina şîvê bo her kulfetekî hebek derman didê û “Bixun vê hebê û rakin exina li erdê.” Her yek hebekê davêje devê xwe û li ber hembêzên titûna mişmişî xwar dibin. Piştî çendekê herkes di cihê lê de dihênije û herkes totî ser hembêza li ber xwe dibê. Sibetirê tav hiltê û der û cîran dibînin ku malika reben di ber titûn de di xewa kûr de ye û bêhna miraran radibe ji hembêzan.

### Rakirina titûna Semsûrê

Herwiha rêncberên titûn di van herdû mehan de li ser pişta kêrê û li ber pozikê şûjina pêvekirinê dijîn. Di vir de pirs ev e ku çima ewqas hassasiyet û lez divê bo titûnê? Titûna qaçax avî ye. Bi avê mezin dibe. Wek ku tu li zarokekî binêrî divê tu heta ku kamil bûye di nav de bî. Kolan, avdan, xesandin, pîncikkirin, binî vekirin û dermankirin. Ji ber av û eyama aliyê Cêlika û gundên derdorê bo titûna qaçax bi berdêla zêran e, li titûneke li kişandinê xwaş û li firotinê jî tijî buha digîhê. Piştî ku titûn li nava zeviyê kamil dibe, bi das û qalûcan ji kokê vê tê çinîn. Pişt re bi kêrên taybet her çiloyekî titûn yek bi yek ji koka wî tên rêşkirin. Tevî parçeyekî koka qalind tê qelaştin. Pişt re li ser wan sir û kokan dikeve exinê. Piştî ku di exinê de zer bû vê carê divê bi lez bête pêvekirin. Careke din yek bi yek, çilo bi çilo di şûjinan re derbas dibe û li bendên zirav tê rêzkirin. Ji titûna ku di bendan re hatî kirin gulaz tê gotin.

Piştî pêvekirinê divê vê carê gulaz bi qam û îskeleyan de bêne dardakirin. Bo ku hişk bibe. Lê divê hişkûna titûnê li ber tavê be û ba lê nede. Ji ber ku qelaştin û pêvekirin çilo bi çilo dibe, pir dirêj didome ew mesele, meriv aciz dibe, dest û tilî ditezin, laşê mirovan bi hev re dikilkile. Titûna Semsûrê îro li Tirkiyeyê, li Sûriyeyê û hema bêje li gelek dewletên din jî xwedî şan û şerefekê ye. Li kişandinê wek qehwe, li pivkirinê wek telwe û li firotinê wek qewl e. Belê em mabûn di qam û îskeleyan de. Piştî ku gulazên titûn di qaman de (Qam, mekanizmaya ku bi daran tê çêkirin da ku titûn tê de hişk bibe) hişk bûn, vê carê divê ji wir bê daxistin. Lê daxistina wî jî tiştekî din divê. Piştî ku tam hişk bû dema ku eyam hinekî nerm bû, bi ewr û baranê hilmeke nerm ket xwarê divê ew kar bê kirin. Ji ber ku titûn niha hişk e wek barût, divê dema rakirinê nepişire û çilo nemînin rût… belê gulaz dîsa yek bi yek têne daxistin ji qam û di xaniyan de têne bicîhkirin. Dû re jî dema lêkirinê destpê dike. Lêkirin jî ew e: ji berk u çiloyên titûn tev parçeyek koka wê hatiye kêrkirin û pêvekirin, divê vê carê ew koka darinî bê jêkirin. Dîsa destpê dike û yeko yeko çiloyên titûn di ber destan re derbas dibin. Wek desteyên bexdenûsê çiloyên ku darên wan hatine jêkirin têne girêdan û demed tê gotin ji vê re. Êdî titûn niha hatiye ber hûrkirinê.

Helbet zehmet û ked dayîna gîhandina titûn ne ewqas hêsane bi qasî nivîsîna rûpelekê. Dîsa jî me xwedst em balkêşî û navdariya titûna Semsûrê û rêwitiya wî ya gîhandinê bi xwînerên xwe re vekin. Ji ber ku bi taybetî di salên dawî de li hemû bajarên Tirkiyeyê dikanên titûn firoşiyê vebûne û ew qad bûye qadeke bazirganiyeke balkêş. Niha ji Amedê bigire hetanî Qersê, ji Mêrsînê bigire hetanî Sînopê, li her bajarî titûnfiroş hatine vekirin. Li Stenbolê tenê, li gor texmînan dora 500 dikanên titûn firotinê hatine vekirin.

Helbet buhayê titûna Semsûrê jî gihîştiye asteke balkêş. Ji ber ku li gelek qonaxan bazirgan diguhirin, buhayê wî jî her diçe zêde dibe. Bo mînak, kêloyek titûna herî baş li gund niha 55-60 lîre ye. Lê heman titûn li Stenbolê bi 150 lîrayî tê firotin.

# Zîvê gerdena Mezopotamya yê: Mîdyad

Welat Baz

Mîdyad dergûşa gelên cêwîk, yek ji bajarên newaze ya xweza ya Kurdistanê ye.

Bajarê Mîdyadê li Bakûrê Kurdistanê di nav eyaletên Mêrdîn, Xerzan, Amed û Botanê de bajarekî girîng e.

Pîvana xaka Mîdyadê ji 1000 km² firehtir e. Bajêr di navbera hêlîlarên 39 û 42 û di nav hêlîpanên 36 û 37an de cîh digre.

Xaka Mîdyadê herçiqas bi piranî asêbê jî, çiyayên bilind lê tûne ne. Xaka bajar seranser ji gir û çiyayên biçûk pêk tê.

Navekî heremê Tur Abidîn e, ku di zimanê suryanî de tê wate ya 'Çiyayên Evdên Xwedê'. kurd jî ji heremê re di wate ya 'Çiya' de hîn jî dibêjên 'Torê'.

Bagok û Çiyayên Mîdyadê li heremê çiyayên herî bilindin. Bagok, Nisêbîn û Mîdyadê ji hev diqetîne. Çiyayê Şêxan, Derêgulê, Elîn, Doşo, Quzrê û Kûrê çiyayên din ê Mîdyadê ne.

Rûyê gir û çiyayên dora Mîdyadê heta 50 sal berê jî tev daristan û şînahî bûne. Di salên dawîn de ev daristan di zivistanan de ji bo şewatê hatine bikaranîn û ji bo firehkirina zêwiyan jî gelek daristan hatine şewitandin. Di salên dawîn de artêşê jî qaşo ji sedemên leşkerî û ewlekarî gelek daristanan şewitand.

Îro hîn jî li rûyê xaka Mîdyadê bi hezaran kokên jêkirî an jî şewitandî yê darên berû û keleman tên dîtin.

Nawenda bajêr li ser zozanekî 1100 metre bilind hatiye avakirin. Li zêwiyên bajêr ê bejî bi piranî rez, li deverên avî jî birinc, genim, nîsk, garis, baçîk û ceh tên çinîn.

Di salên dawîn de li zêwiyên bajêr çinîna Fistiqên Entabê jî destpêkiriye. Herwiha fêkiyên wek trozî, zebeş û cûrekî trî yê taybetî li xaka Mîdyadê tê çinîn.

Çemê ku erdîma Mîdyadê avdidin, Avaspî û Avareş e. Çemê Avaspî ji bakûrê rojavayê Mîdyadê dizê û ber bi Nisêbînê ve diherike. 5 km dûrî Nisêbînê li ser Çemê Avaspî santralekî kareba hatiye avakirin. Li keviyên çem gelek deverên mesîre û germaveke navdayî jî heye. Ji vê germava nêzî Mîdyadê aveke bi kukurt û 40 derece germ derdikeve.

Li Mîdyadê ajalvanî jî pêş ketiye. Havînan gelek keriyên pez zozanên Mîdyadê şên dikin. Gelek malbatên gundî debara xwe bi xwedîkirina kerî û garanên sewalan dikin.

### Bajarê kurd û suryaniyan

Mîdyad li gor sîstema rêvebiriyê navçeyekî ye û bi Mêrdînê ve girêdayî ye. Mîdyad ji rojhilatê ve cîranê Hezexê, ji bakûr ve cîranê Kerboran û Kercewsê, ji rojava ve cîranê Sitewrê û ji başûrê ve jî cîranê Nisêbînê ye.

Şêniya Mîdyadê ji 70 hezarî zêdetir e. Ji vê nifûsê bi qasî dû hezar kes suryanî ne. Suryanî, Îsewiyên Ortodoks in. Bi zimanê suryanî diaxifin. Hin malbatên mehelmî jî li Mîdyadê hene. Mehelmî musluman in û bi giranî bi zimanê erebî diaxifin. Kurdên Mîdyadê jî ji mezheba sunî ne û bi zarava kurmancî diaxifin. Di salên borî de li Mîdyadê hin kurdên ezdî jî hebûn.





Mîdyad di sala 1890'an de wek belediye hatiye birêxistin û di sala 1900'an de jî wek navçe bi Mêrdînê ve hatiye girêdan.

Navçe ji dû taxên mezin pêk tê. Taxa ku demên berê zêdetir suryanî lê bûn wek Mîdyad, Navça ku Musluman yanê kurd û mehelmî lê dijîn jî wek Estel tê binav kirin. Rêya Hezexê di ev herdû taxan ji hevudû diqetîne.

### Çiyayê Evdên Xwedê: Tor Abidîn

Mîdyad wek maketeke Rojhilata Navîn e. Bajêr bi demoxrafya xwe cîhekî pirreng e. Heta salên dawîn li vê herema gelê suryanî, ermenî û kurd di nav hev de dijiyan. Li gor salnameyên kevn di serê sedsala 20an de ji sisêyan yekê şêniya heremê suryanî û ermenî bûn. Li gor van salnameyan di sedsala 16an de li heremê gelek cihû û mecûsî jî hebûne. Li Mîdyadê hin mehelmî jî dijîn. Mehelmî ku bi eslê xwe suryanî ne û 400 sal berê bi zora Osmaniyan bûne Muslûman, piranî bi zimanê erebî diaxfin.

Lê ew dewlemendî û rengên cihê bûn qurbana siyaseta Dewleta Osmanî û Komara Tirk. Di dîroka Osmaniyan de yek ji rûpelên rêş, fermana suryanî, ermenî û Êzdiyên hereme ye. Di qatliamên salên 1895 û 1915'an de Dewleta Osmanî bi tevî alîkariya hevkarên xwe li herema Mîdyad û Mêrdînê bi dehhezaran suryanî, ermenî û ezdî kuştin an jî sirgûnkirin.

Helbet dema Mîdyad tê gortin suryanî tên bîra mirov. Suryaniyên ku vê heremê wek Tor Abidîn binav dikin, ji rûniştvanên heremê ê herî kevnin. Ew bi piranî li navend û li çend gundên Mîdyadê dijîn.

Kurdên Mîdyadê jî xwedî taybetiyên cuda ne. Kurdên navçê wek konfederasyoneke eşîran e. Ew bi giştî wek Torî tên naskirin. Axaftin û adetên Toriyan di nav civaka kurd de cîhekî taybetî digre.

### Dîrokeke kevn û kûr

Li herema Mîdyadê dîroka şaristaniyê b.z di salên 2 hezaran de di dema Hûrrî-Mittaniyan de destpêdike. Helbet ne tenê Mîdyad, Mêrdîn û navçên wek Nisêbîn û Stewrê jî bi qasî Mîdyadê kevnin û li van deveran jî gelek rêç û berhemên dîrokî hene.

Berî zayînê di sedsalên 12an de Asûriyan heremê bidestdixin. Salên 600, dema desthilatiya Medan e. Med 150 sal li Mîdyad û Mezopotamya hukum ajotin. Paşê bi dorê Persî, Îskender, Abgaran, Romayî û Bizansî heta sefera Artêşa Ereb a sala 640an, xwedîtiya heremê kirine.

Di salên 1147'an de herem dikeve destê Zengiyan û paşê jî derbasî bin hukmê Eyûbiyan dibe. Piştî têkçûna Eyûbiyan Mîdyad û derûdorê heta ji alî Osmaniyan ve tê dagirkirin, gelek car ji alî Moxol, Memlûk, Aqqoyînî û Sefewiyan ve tê talankirin. Di dema Osmaniyan de bûyereke giring ewe ku Mîdyadê jî digre bin bandora xwe, serhildana Bedirxan Beg e. Dewleta Bedirxan Mîdyadê jî digirt nav sînorê xwe û dema şerê 1850an a Osmanî û Mîrgeha Botan, kurdên Torê jî



## Hunera zirav: Zîvkarî

Dema rêya mirov bikeve Mîdyadê, bêhemd berê mirov dikeve dikkanên zivkeran. Zîvkarî ya Mîdyadê hunerekî kevnare ye. Bi taybetî li vê navçê neqşandina karê têlkarî pêşketiye. Di demên kevn de li bajêr karên wek kêrkerî, seferî, şewraxî, cêrkerî, kurkankerî, hedadî, nalbendî û hesinkerî jî pêş ketibû.

Zîvkerên Mîdyadê bi giştî Süryanî ne. Gelek hostayên ku rih û estetîk didin zîvê, di salên dawîn de ji ber zextên siyasî û sedemên aborî koçkirin û li cîhanê belavbûn. Zîvkerên Mîdyadê navdayî ne. Berhemên van hostayên Mîdyadê li bajarên din ê Kurdistan û li cîhanê tên firotan. Bişkokên milan, teyfik, qolye, firakên çay, gustîrk û gelek tiştên din ê zîv berhemên sereke ne.

Rîsandina xalî û kilîman jî li Mîdyadê yek ji karên sereke ye. Li heremê bi piranî xaliyên Hereke tên rîsandin. Di kilîman de jî motîvên geometrîk tên bikaranîn. Di salên dawîn de, di malan de tevnên kilîman belavbûne.









alîkariya hêzên Bedirxan kirin.

Di serê sedsala 20'an de herema Mîdyadê jî, ji pêlên netewbûnê ku li cîhanê balavbûbû tesîr digre. Welatparêzên kurd ku di van salan de rêxistin û komelan avakirine, li herema Mîdyad û Mêrdînê jî xebatan kirine.

Di dîroka welatparêziya Mîdyadê de serhildanên Elîkê Betê û Haco Axa dû bûyerên girîngin. Elîkê Betê ku Serokê Konfederasyona Hevêrkan bu, di sala 1919'an de li dijî Osmaniyan serhilda. Dîsa Haco Axa ku endamê Rêxistina Xoybûn bû piştî Serhildana Şêx Seîd di sala 1926'an de li herema Torê û li Bagokê êrişê hêzên dewletê dikir. Di encam de gelek pevçûnên bixwîn û li gundê Eleqemşê qetliameki mezin pêk hatin.

Ber bi salên 1960'an ve li Kurdistanê pêla netewî bilind bû. Herema Mîdyadê jî di bin bandora vê pêlê de ma. Rewşenbîrên ku jî vê heremê derketibûn, di xebatên kurdayetiyê de serî dikşandin. Yek ji wan Mûsa Enter bû, ku li gundê Stîlîlê, li quntarê Çiyayê Bagokê mezin bûbû.

> Bêyî warên dîrokî û renginiya avahiyên giranbuha, Mîdyad bi serhildanên xwe yên wek Elîkê Batê, Haco Axa û hin serhildanên din yên dîrokî jî navdar e.

Ber bi salên 1980'an ve Torê yek ji heremên nîv rizgarkirîbû. Di van salan de gelek komikên welatparêz li deverê xebatên aktif dikirin. Li dijî pêla netewî, rejîmê jî tedbîrên tund distend. Bi destpêka şer, li Mîdyadê jî hin malbatên hevkar, korucu, yanê cerdewan hatin birêxistin. Cerdewanan di navbera salên 1992 û 1996'an de li dijî gundiyan gelek qetliaman pêk anîn.

### Xaniyên Mîdyadê, newazeyên mîmariyê

Bê guman, dema navê Mîdyadê tê gotin, xaniyên vî bajarî tê bîra mirov. Mîdyad wek bajarên derûdorê li ser heremekî wolqanîk hatiye avakirin. Xanî û avahî ji kevirên qalker tên lêkirin. Dîwarên ku ji van keviran tên rîsandin, zivistanan germ, havînan hênikin. Mîmariya kevirên spî ê birrandî îro jî didome. Di hin avahiyan de li kêleka keviran, kelpîç jî tên bikaranîn.

Xaniyên Mîdyadê wek xaniyên Mêrdînê ne. Birrîn û neqşandina van keviran wek ‚Karê Mîdyadê' tê binavkirin. Mîmariya van xaniyan taybetiyekî rengîn dide vî bajarî. Çarçowiyên derî, pace, sitûn, kember û sivirnekan bi karkeriya kevir û oya hatiye neqşandin.

Xaniyên Mîdyadê di nav hevdene. Pirê avahiyan li ser yek qatîne. Baniyên wan rast e. Erda avahiyan jî xweliyê ye. Diwar ji keviran e. Xaniyên ku salên dawîn tên avakirin, her diçe ji mîmariya kevn dûr dikeve. Pirê van xaniyan ku ji tûle, brîket û çîmetoyê tê avakirin, dû qatin.

### Kevintirîn manastir: Deyr ul Umur

Manastira Deyr ul Umur 18 km dûrî Mîdyadê ye. Manastira cemaata Suryaniyên Qedîm bi motîv û mozaîqên xwe, wek abîdeyeke hunerî ye.

> Mîdyad wek navendeke ol û baweriyan jî bala cîhanê dikşîne. Her sal ji çar aliyê cîhanê bi hezaran suryanî tênê vir û li Deyr ul Umurê dibin mêvanê dîrokê.

P.z di sala 397an de ji alî Mar Şmûîlê Stewrî û Mar Şemûnê Kartmenî ve hatiye avakirin. Manastir di demên pêşîn de bi navên herdû avakirên xwe ve dihat naskirin.

Di sala 640an de Artêşa Erebên Musluman ketin Kurdistanê. Bi fermana Xelîfe Emer avahiyên dîrokî, ji talanê û xerakirinê hatin rizgarkirin. Ji ber vê yekê navê Xelife Emer li manastirê hat danîn û wek Dêrul Emer hat naskirin. Piştî salên 668an manastir bi navê Mar Gabriel hat bîranîn. Ev kes wê demê berpirsê vê dêrê bûye.

Di hindirê manastirê de gelek car tamîrat û restorasyon hatiye kirin. Di salên dawîn de dewletê destûr nade ku cîhên xerabe bên tamîrkirin û û bi vî awayî manastir li ber qedera xwe sekiniye.

Her sal bi hezaran suryanî tên serdana Deyr ul Umurê. Mêvanên manastirê bi piranî ji dervayê welat, ji Ewropa, Amerîka û ji Tirkiyê tên.

Ji bilî vê manastirê, li derûdora Mîdyadê bi navê Mar Yakûb, Mar Kirakos, El Hadra, Mar Azazel û Mar Aygen, çend manastirên din jî hene.

Li nawenda Mîdyadê çend dêrên din jî yên Suryaniyan hene. Guhdarvanên dengê zengilên dêrên Mîdyadê wek demên kevn ne gelekin. Suryanî ku yek ji xwediyên bajêrin, îro li ber xetera nemanê ne. Dêrên Mîdyadê ji berhemên bajêr ê mînakên mîmariya kevnin jî.

# Ji bo ezdiyan seferberî

Piştî ku DAIŞ'ê di 10'ê Gelawêjê de erîşên xwe dan destpêkirin û pêşiyê Mûsil û dûre jî Şengal û hin deverên din ên Iraq û Kurdistanê ketin destê DAIŞ'ê, bi hezaran mirov hatin kuştin û bi milyonan kes jî ket ser rêyên koçberiyê. Penaberên ezdî ku beşek ji wan berê xwe da Rojava, beşekê berê xwe da Başûr û beşek jî hat Bakûr, li çar aliyê Kurdistanê di qam û avahiyên fermî de hatin bicîhkirin. Lê belê piştî ku meseleya bicihkirinê çareser bû vê carê pirsgirêka xwarin, tenduristî, derman û sermayê derket. Bo çareserkirina van pirsgirêkan jî kurd li çar parçeyê Kurdistan û cîhanê seferber bûn û niha xebat û kampanyayên bo alikariya ezdiyan cûr be cûr didomin.






**Li çar aliyê Kurdistanê bo ezdiyên ku li kampan hatine bicîhkirin kampanya û xebatên berfireh bo piştgiriyê hatin destpêkirin.**

### Li Ewropa kampanyaya alîkariyê

Li gel çar perçeyên Kurdistanê her wiha li dîasporayê û bi taybetî li Ewropa jî ji bo ezdiyan kampanyayên alîkariyê hatin lidarxistin. Di derbarê kampanyaya Ewropa de Serokê Federasyona Komeleyên Ezdiyan yê berê Serhan Cemîl di derbarê kampanyaya ku li Ewropa tê meşandin de bi rojnameya me re axivî. Serhan Cemîl da zanîn ku ji bo organîzekirina kampanyayê delegasyona wan ketiye dewrê, her wiha şandeya wan diçe Kurdistanê û tê û du lijneyên wan yên ku li Rojava û Bakur bi awayekî çalak xebatan dimeşînin hene. Cemîl, diyar kir ku ev lijneyên wan hewl didin ku hejmara koçberan û pêdiviyên wan destnîşan bikin dixebitin. Serhan Cemîl da zanîn ku kurdên li Ewropayê û her wiha kesên ji netewên cûda jî bi beşdariyeke berbiçav piştgiriyê didin kampanyayê. Serhan Cemîl got: "Em di warê dîplomatîk de jî xebatan dimeşînin û di vê bareyê de em hewl didin ku tu mirovek me yê ezdî bê cih nemîne û bikaribe xwe li derekê bihewîne."

### Rojhilat jî alîkariyê dişîne

Piştî êrîşên DAIŞ'ê li bajarên Rojhilat ên wek Sine, Mêrîwan, Mahabad, Urmiye û hin bajarên din jî kampanyayên alîkariyê hatin destpêkirin û alîkariyên ku hatin berhevkirin bi kamyonan ji Başûr re hatin şandin. Gellek wendekarên Rojhilatî xercepereyên xwe anîne û radestî navendên alîkariyê kirine.

### Kampanyayên Bakur mezintir dibin

Di nav koçberên ezdî de herî zêde zarok maxdûr dibin. Lê ji bo pêdiviyên zarokan jî gellek alîkarî têne kirin. Însiyatîfa Azadî ji bo pêdiviyên zarokan bibersivîne kampanyayek da destpêkirin. Peywirdarê kampanyaya pêdiviyên zarokan Ahmet Kaya da zanîn ku heta niha wan li Batmanê ji bo 4 hezar zarokên ezdî yên ku temenê wan di navbera 6 û 15'an de ne, cil û berg berhev kirine û ew cil û berg li zarokan belav kirine. Ahmet Kaya destnîşan kir ku tenê li Stenbolê nêzîkî 3 hezar cil gihîştine wan û diyar kir ku li gel alikariyên cil û bergan her wiha ew alîkariya aborî jî organîze dikin. Kaya got: "Ji bilî alîkariyên din, heta niha me 15 hezar lîra berhev kiriye. Emê van pereyan jî ji bo kirîna cil û berg, pêlav û hin pêdiviyên din bikar bînin. Em alîkariyên eşyayî bi kargoyê distînin û alîkariyên pereyî jî di hesabê bankayekî de berhev dikin." Ahmet Kaya da zanîn ku ew hewl didin piştî Batmanê li Mêrdînê jî dest bi xebateke bi vî awayî bikin.

### Dewlet alîkariya derman nake

Ji alî din ve ji bo pêdiviyên tendurustiya koçberên li kampan, şaredarî, bijîşk û odeyên dermanfroşan di nava hewldanan de ne. Odeyên Dermanfroşan ya Batman, Amed, Mêrdîn û Sêrtê ku bi bûhayê 650 hezar lîra derman bexşandine ji rojnameya me re ragihandin ku pêdiviyên derman ji alî şaredarî û bijîşkan ve têne destnîşankirin û li gor van pêdiviyan derman tê berhevkirin.

Di derbarê kampanyaya ku li Sêrtê dom dike de Serokê Odeya Dermanfroşan Bengin Bilek da zanîn ku wan dest bi kampanyayek mezin kiriye û ji bo pêdiviyên kampa li Sêrtê wan mala tendurustiyê ava kiriye. Bengîn Bilek egera kesên ku ji ewropa jî alîkariya derman bikin bi bîr xist û got: "Divê dewleta Tirkiye piştgiriyê bide koçberan, lewre pirsgirêka tendurustiyê tenê bi Odeya Dermanfroşan nayê çareserkirin. Li gor pêdiviyên ku Odeya Bijîşkan destnîşan dike em hewl didin ku vê pirsgirêkê çareser bikin"

Serokê Odeya Dermanfroşan a Batmanê M. Emîn Beyaz jî diyar kir ku ew wek Odeya Dermanfroşên Batmanê li gel Odeyên Dermanfroşan ên bajarên din ên Bakur bi hevkarî alîkariyên derman temîn dikin û ji koçberan re dişînin. M. Emîn Beyaz got: "Dewleta Tirkiye di vê bareyê de heta niha tu alîkarî nekiriye û alîkariyên ku heta niha hatine kirin tev me ji kîsê xwe kiriye û emê her berdewam bikin." M. Emîn Beyaz bal kişand ser helwesta AFAD'ê û ragihand ku AFAD'ê dermanê ku ji ezidiyan re tê şandin naxe çarçoveya alîkariyên mirovahî û ji ber vê yekê bûhayê hemû dermanan ji dermanfroşan têne birîn. Beyaz got: "Em ji vê yekê fikaran nakin lê belê em dixwazin ku Tirkiye hestiyariya ku ji penaberên sûriyeyî re dike penaberên ezidî re jî nîşan bide. Lê, di her şert û mercan de emê alîkariyên xwe berdewam bikin."

Serokê Odeya Dermanfiroşên Amedê Ferhat Değer jî da zanîn ku bi tevahî zêdetirî 5 hezar ezdî li Amedê li qampan hatine bicîhkirin û pêwistiyên wan yên derman û tenduristiyê heya niha ji aliyê gel ve têne dîtin. Değer diyarkir ku yekem firoşgeha derman ya li qampan, li Amedê hatiye vekirin û wiha domkir, "Me li nava qampa li Amedê firoşgeha derman vekir. Heta niha me bi bihayê 200 hezar lîre piştgiriya derman dayê vê qampê. Heya niha tu pirsgirêk li ber piştgiriya alikariya derman derneketiye. Lê ji ben ku konên ku bo ezdiyan hatine vekirin tenik in û ne ji bo zivistanê ne rewş meriv dixe nava fikaran."

Li Mêrdînê jî ji bo kampanyaya alîkariya derman lijneyek hatiye damezirandin. Ev lijne pêdiviyên wek; derman, xwarinên pitikan, alavên tedawiyê temîn dike. Berpirsê Lijneya Kampanyayê Bülent Baz da zanîn ku ji bo penaberan herî zêde pêdivî bi dermanên nexweşînên zarokan û yên kronîk heye. Baz van agahiyan da me: "Li Mêrdînê nêzîkî 7 hezar koçberên ezdî hene. Reçete tînin cem me û em jî hewl didin ku bi bê pere derman bidine wan. Lê belê li pêşiya me zivistan heye û wê pêdiviya derman zêdetir dibe. Dibe ku pêdivî bi alîkariya dewletê jî bibe.

### Derman binivîse û ji 4384 re bişîne

Li gel Odeyên Dermanfiroşan li Bakur ji gellek alî û derdoran jî ji bo ezdiyan kampanyayên alîkariyê têne lidarxistin. Heyva Sor a Kurdistanê ji bo Cejna Qurbanê wê kampanyaya 'Ji bo canek qurbanek' bide destpêkirin û ji bo vê kampanyayê bang li kurdan kir ku xêr û qurbanên xwe ji ezdiyan re bişînin. Weqfa Alîkariya Mirovî jî kampanyayeke SMS'ê da destpêkirin û ragihand ku kesên ku dixwazin alîkariyê bikin bila Irak binivisînin û ji 3072 re peyamekî bişînin. Her peyamek dibe alîkariya 5 TL'yî. Wek tê zanîn Odeya Dermanfroşên Mêrdînê jî di demên borî de, bi bergidana 5 TL'yî, bi peyama DERMAN re şandina reqama 4384'an kampanyayeke SMS'ê dabû destpêkirin. Kesên ku dixwazin alîkariya xwe bigîhînin koçberên ezdî, dikarin serî li Şaredariyên Bakur, Odeyên Dermanfroşan, Weqfa Alîkariya Mirovahî û dezgehên din ên kampanyayên alîkariyê pêk tînin bidin.






# Pira Kurdistan û Ewropayê

**Fatoş Yıldız**

Piştî salên 70'yî û bi taybetî jî ji 1980'yî bi şûn de bi hezaran kurd neçar man kû bikevin ser rêyên koçê û berê xwe bidin welatên Ewropayê, Elmanya, Fransa, İngiltere, Norveç, İsveç û Belçîka. Ji van welatan Belçîka weke navenda siyasî ya cîhanê tê zanîn. Herwiha kurdên vê derê jî bi çand û kevneşopiyên xwe dijîn û saziyên xwe avakirine û li van saziyan dinyayê dinasin yan jî xwe bi dinyayê didin naskirin. Ji van saziyan ya herî balkêş û sereke jî helbet Enstîtuya Kurdî ya Brûkselê ye. Ji ber xebat û afirirêriya ku li vir tê kirin xwedî buhayekî giran e bala belçîkiyan dikşîne û ew wek dewlet qîmetek giran didin enstîtuyê. Enstîtuya Kurdî ya Brûkselê ji aliyê dewletê vê bi awayekî fermî tê naskirin û bi fermî piştgiriya wê ya aborî jî dike. Serokê Enstîtuya Brûkselê Derwêş M. Ferho di derbarê kurdên li Belçîka û xebatên enstîtuyê de pirsên me bersivandin.

***Li Belçîka çiqas Kurdistanî dijîn û bi çi karan re mijûl in?***

Li Belçîkayê nêzîkî 60 hezar Kurdistanî dijîn. Di salên 60'î de karkerên ji Bakur, di salên 80'yî de kurdên polîtîk, di salên 90'î de û di deh salên dawîn de jî ji Rojhilat, Başûr û Rojava gelek koçber û penaberên Kurdistanî hatin. Di nava Kurdistaniyan de ji bilî kurdan, ermenî, suryanî, asûrî, kildanî û gelên din jî hene.

***Li Belçikayê ji bo zarok û xwendekarên kurd çi xebat tên kirin?***

Di çarçoveya xebata enstituyê de projeyên cûda hene ku bi taybetî ji bo xwendekar û ciwanên kurdani in. Ev proje bi alîkariya Yekîtiya Ewropa têne amadekirin û birêvebirin. Her sal, di mehên havînê de di navbera 40 û 50 xwendekar-ciwan ji bo çend heftiyan li welatekî dicivin û li ser pirsgirêk û bîr û baweriyên wxe diaxivin (heta niha li Swêd, Hollanda, Belçîka, Almanya, Ermenîstan, Gurcistan ev pêkhatine). Ji bo xwendina xwendekaran di salên 80 û 90'î de me bûrsên xwendinê jî peyda dikir. Lê van deh salên dawîn ev xebat êdî nayê kirin. Sedema herî mezin jî ew e ku Belçîka temamiya bûrsên xwendekaran dide xwendekarên Kongo (Zaire). Em ji bo zarokên Kurdistaniyan jî heftiyê sê rojan alîkariya wan ya pirsgirêkên xwendinê dikin.

***Derbarê zimanê kurdî de çi xebat te kirin? Weşanxaneya enstitûyê çi xebatan dike?***

Ji sedema pêwîstî û girîngiya agahdarî û xebatên civakî di nava Belçîkayê de (karê lobiya siyasî) em mixabin nikarin karekî darîçav ji bo zimanê kurdî bikin. Lê em li ser siyaseta ziman di nava gelek xebatan de ne. Her çend enstitûya kurdî di nava çarçoveya xebata xwe de ewqasî li ser zimanê kurdî nasekine jî.

***Bi Parlemena Ewrûpeyê re pêywendiyên we bi çi rengî ne? Ji bilî xebatên çandî, xebatên we yên siyasî jî hene?***

Peywendiyên bi parlemena Belçîka re bingeheke esasî ye. Ji bo pêywendiyên xurt em li gor derfetên xwe dixebitin û li gora bîr û baweriya min di gelek waran de em karekî baş dikin. Em her sal 4 - 5 konferansên mezin di gelek parlementoyên Ewropî de pêk tînin û peywendiyên me her hene ku em xebateke berdewamî bidin jiyandin. Ji bo wê jî bi serkêşiya Enstitûya Kurdî ya Bruxelles me Koma Parlementeran ya Xebatê (Interparlementaire Work Group for the Kurds) ji bo kurdan ava kiriye ku her serê meh û nîvekê de di senatoya Belçîka de dicive û li ser rojeva Kurdistanê radiweste. Ev dikare bibe mînakek ji bo welatekî mîna Tirkiye ku wiha mezin e û nifûsa wê ji 80 milyon (deh caran ji Belçîka mezintir e) zêdetir e. Ew safsateyên ku wê welat parçe bibe bi vê mînakê pûç dibe.

***Ji bilî saziyên fermî bi saziyên civakî re têkiliyên we çawa ne?***

Bê guman xebatên me bi zanîngehan re, bi saziyên civakî re, bi partiyên siyasî re û şaredariyên cûda re jî berdewam in. Ji ber ku mînakên ku em ji vê civakê hîn bibin û ji bo Kurdistan qezenc bike zêde ne. Sîstema perwerde ya bi zimanê dayikê, zagona bingehîn ku van civakan bi hev re di nav welatekî de dicivîne û îdare dike.

***Raya giştiyê ya Belçikayê di derbarê bûyêren li Kurdistanê de çi difikire?***

Ev bi salane ku raya giştî ya Ewropa di bin tesîra propagandaya dewletên cûda de ye. Bê guman berjewendiyên dewletî yên Ewropa jî roleke mezin dilîze ku kurd nedihatin guhdarîkirin. Bi taybetî Tirkiye roleke gelekî xerab û dijminane li hemberî Kurdistaniyan dilîze. Herçend raya giştî ya Ewropa, siyaseta wan, civaka wan, ragihandina wan pirsgirêk nas dikir jî, nêzikahiya wan ne erênî bû. Her tim di dan û stendinên xwe de bi hesab bûn. Ji ber ku kurd û gelên dinen li Kurdistanê her tim bi rêya wan hatina ragihandin û ewropiyan nexwestiye peywendiyên xwe bi van welatan re bikin xeterê.

***Kurd di derbarê agahdarkirina civaka ewropî de çi dikin?***

Li temamiya welatên Ewropa Kurdistanî di xebata civakî de û pirsgirêka netewî de aktîftirîn civak in. Li her bajarên Ewropa koealeyên kurdan hene. Bi taybetî kurdên ji Bakur xebateke bêhempa dikin. Rojhilatî û Rojavayiyan jî dest bi xebateke xurt kirine. Bakûrî di qada xebata Kurdistanê de xebateke dîrokî bi rê ve dibin. Mixabin kurdên Başûr di vê xebatê de ewqasî zeîf in ku dilê mirov bi vê rewşê dişewite. Xwendekarên me li her cîh û di her waran de zêde dibin. Dersdarên Kurdistanî li gelek xwendegeh û zanîngehan peyda dibin. Her ku diçe siyasetmedarên me di nava partiyên siyasî de xuya ne û li çend welatên Ewropa parlementerên Kurdistanî hene. Her roja diçe hejmara parlementerên me û siyasetmedarên me, xwendekar û desrdarên me digîhîje asteke ku bukaribe bi yên tirkan re di rekabetêkevin. Ev jî ciyê şanaziyê ye.



## Enstîtuya Kurdî ya Brukselê

Enstîtuya Kurdî ya Brukselê, di Cotmeha 1978'an de bi navê "Têkoşer – Yekîtiya Karker û Xwendekarên Kurd li Belçîka" ava bûye. Di Gulana 1989'an de, bi navê Enstîtûya Kurdî ya Brukselê nav guhertiye û ji aliyê wezareta çandê ya Belçîkayê ve, di çarçoveya "perwerdekirina gelemperî ya daîmî" de, bi awayekî fermî hatiye pejirandin û ji dewleta Belçîka alîkariya maddî distîne.

Enstîtuya Kurdî ya Brukselê rêxistineke civakî û çandî ye. Ne girêdayî partiyeke siyasî ye. Di dawiya salên 90'î de Enstîtûya Brukselê ji aliyê Senatoya Belçîka ve wek 'saziya kurdî ku xebateke mînak dike' tê qebûlkirin û weke 'saziya muxatab ji bo pirsgirka Kurdistanê' jî tê pejirandin. Enstîtu ji destpêkê ve bi belçîkiyên ku bi taybetî li ser pirsgirêkên Kurdistanê re kar dikin dixebite. Heta niha gelek pîrtuk ji zimanê îngîlizi, elmanî, tirki û kurdî ji aliyê vê enstitüye ve hatine wergerandin.

## Cizîrî

Kes bi dada me nepirsit gilleh û dadî çi kit
Te nebit dadiresek beyhude firyadi çi kit
Bi Şîrînê negehit destî eger Rustemî bit
Dê bi baz û milan şubhetê Firhadî çi kit
Fa'ilek lazim e da fi'l û eser peyda bit
Ger du heddadî nebit kureê heddadî çi kit
Mumkinek dê hebitin da ku taleb hasil bibit
Seyd û nêçîr ku nebit toleê seyyadî çi kit.
Her gil û send dibitin zêrî tedbîrê hekîm.
Qabillîyet ku nebit hikmetê ustadî çi kit.

**Jiyan û destnivîsên Xanî, weke li rojhilat, li rojava û Rûsyayê jî di gelek çevkaî û pirtûkxaneyan de cihê xwe girtine.**

## Xanî

Mîrê meclis nekenit mutrubê goya çi bikit
Xunçe xendan nebitin, bilbilê şeyda çi bikit
Bîneka husnê butan lazim e sahib nezer
Kesê bîna ku nebit dîlberî zîba çi bikit
Kerem naçite tîpa edûwan merdê şecî'
Tîxê ahêxte bê destê twana çi bikit
Talibê ilm û kemalê nebitin qabilê feyz
Hîkmet û terbiyeta alimê dana çi bikit
Qelbê Xanî sedefa gewherê 'irfan e welê
Metinxwanek nebitin sahibê me'na çi bikit.

# Xanî û rihê Melayê Cizîrî

**Mehmet Gültekin**

Ehmedê Xanî bi şewqa hunera wêje û fikrên xwe yên di derbarê felsefeya civakî de ji heyama xwe heta roja me bandoreke bihêz li ser şair û ronakbîran hîştiye. Jixwe ev babet ji zûde ye ku bûye mijara gelek xebat û lêkolînan. Lê belê ji aliyê din ve diyar e ku di derbarê têkiliyên di navbera berhemên Xanî û yên helbestvan û zanyarên kurd yên beriya heyamên wî de valahiyeke berbiçav heye û ev yek bi awayekî berfireh nehatiye lêkolîn.

Di gulvedana hunera edebî ya Ehmedê Xanî û bingeha fikrên wî yên felsefîk de rola sereke ya tecrubeyên şaîr û zanyarên beriya heyama wî ne ku Xanî bi xwe jî vê rastiyê di berhemên xwe de carina bi nehênî û hin caran jî eşkere diyar dike. Ehmedê Xanî di Mem û Zînê de qala sê şairên navdar ên kurd dike, kîjan beriya wî jiyane û berhem dane; Melayê Cizîrî, Elî Herîrî û Feqiyê Teyran. Helbet ev nayê wê wateyê ku haya Xanî tenê bi van hersê hozanên kurd hebû. Îhtimalek mezin e ku ew ji hebûna gelek şaîr û edîbên kurd û ji berhemên wan hayîdar bû. Jixwe em ji nimûneyên edebî yên ku heta roja me neqil bûne pê dizaninin ku beriya Xanî ji 50'î zêdetir şairên kurd jiyane ku helbestên wan di nav civakê de belav bûne. Bi ser da Şerefxanê Bidlîsî jî di Şerefnameyê de qala gelek şairên kurd dike, lêbelê tu navan nade. Wek mînak Şerefxan piştî ku salixê kuştina Pîr Budaq ê Baban di destpêka sedala 16 an dide, dibêje:

*"Wê çaxê şair û dengbêjên kurd di derheqê mêr, mêrxasî, merdî û taybetmendiyên vî mîrî de kilam û stran derxistin, çîrokbêjan ev bûyer weke şaranên durr û ceweheran bi ben ve kirin û çîrok û serpêhatiyên wî ketin ser dev û lêvan û sen'etkar û dengbêjan ew di meclîsên mîr û began de bi aheng û meqamên kurdî gotin."*

Herwiha dema ew para Mîrên Zirkan a di pirtûka xwe de qala Yaqûb Begê ji dema nîvê pêşîn ya sedsala 16 an dike, bi berdewamî van agahiyan jî di derbarê helbestvaniya wî de neqil dike:

*"Li hemberî şiir û nazmê hewesa wî hebû; di vî warî de xwediyê çalakiyên aktîf bû. Gelek şiirên xwediyê neveroka yekitiya Xwedê û heqîqetan li pê xwe hiştin. Piraniya şiirên wî bi kurdî ne. Ez bawer dikim dîwanek wî ya bi kurdî jî heye."*

Şerefxanê Bidlîsî ê ku bi xwe jî şair bû di pirtûka xwe ya Dîroka Kurdan de ji bilî vê qala gelek şair û aliman dikê, kîjan di mîrektiyên Bidlîs, Bahdînan, Cizîr û Hakkarî de jiyane, di heyamên xwe de gelek navdar bûne û hunera helbestvaniya wan di nava civatê de cihekî sereke girtiye.

Ji hersê şairên ku Xanî navê wan bibîrtîne Elî Herîrî û Feqiyê Teyran bi helbestên xwe yên civakî û evînî di nava kurdan de gelekî hezkirî ne. Şairê helbestên lîrik yê navdar Melayê Cizîrî jî wek eyan e cihê xwe di asta hostadên helbestvaniyê ya wêjeya klasîk ya Rojhilata Navîn de girtiye. Mela ji dema jiyana xwe pêve heta niha di civaka kurdî de nav û dengekî gelek xurt û belavbûyî ye, gelek helbestên wî di nav gel de jibere tên gotin. Ehmedê Xanî ji nav hemû şairên kurd bêtir di bin bandora hunera helbestvaniya Melayê Cizîrî de maye. Yek ji helbestên ku vê bandorê ji aliyê şêwe û hindek jî ji aliyê nevrokê ve diyar dike, helebesta Mela ya bi sernavê Kes bi dada me nepirsit û a Xanî bi sernavê Mîrê Meclis e.

Mela jî, Xanî jî du şair û fîlozofên kurd ên gerdûnîne lê lingê herduyan jî berê pêşîn bi zexmî li ser kulavê kal û bavê wan e. Jixwe Xanî dibêje 'Her gîha li ser koka xwe şîn dibe' û Mela jî vê bi peyvên 'Feyza me şibhê Nîl e, em Dîcle û Firat in' tîne ziman.

'Bînave ruhê Melê Cizîrî'

Dema Xanî fikrên xwe yên ji bo rizgarkirina civaka kurd ji bin nîrê dagirkeran tîne ziman û bona vê jî daxwaza rêberekî şareza dike, dibêje ku ger ev pêkbihata wê demê wî ê "Bînave ruhê Melê Cizîrî". Diyare ku Xanî peyva Ruhê Mela bi zanebûn daniye û dixwazê bi vî awayî ferqa di navbera rewşa ruhî ya Mela û ya xwe de destnîşan bike. Lê gelo çi cudatî di rewş û mercên wan û yên dema wan herduyan de hebûn, qesta Xanî ji ruhê Mela yê ku daxwaza wî ye çi ye?

Wek di Şerefnameyê de diyar dibe, beriya ku Cizra Botan tev li Osmaniyan bû di gelek heyaman de ew mîrektiyek serbixwe bû. Dema Şah İsmail li Îranê bû hukimdar, wî pir caran êriş bir ser Cizra Botan, lê belê ew di van êrişan de hercar têkçû û Cizîra Botan wek herêmek serbixwe mabû. Piştî ku Cizîra Botan ji sala 1514 an pêve bi dewleta Osmaniyan ve hat girêdan jî wê hebûna xwe bi statûya xweser a Hikûmet Sancaq berdewam kir.

Di heyama ku Melayê Cizîrî helbestên xwe nivîsand, ji nîvê sedsala 16'an heta destpêka sedsala 17'an de rewşa mîrektiya Cizîra Botan ji aliyê xweriyê de ji ya mîrektiyên dema Xanî baştir bû. Vê rewşê şewqa xwe daye helbestên Mela û di wan de ruhekî geştir û azadtir peyda kiriye. Dema Mîrê Cizîrê yê wê demê qedrê Mela digire û wî wek 'Ji husnê rewneqek dayê ku Şêx Ehmed me ustad e' destnîşan dike, Mela jî bi denglêkirina "Ey şehînşahê muezzem" wiha pesnê wî dide:

*'Ney tenê Tebrêz û Kurdistan li ber hukmê te bin*
*Sed wekî Şahê Xurasanê di ferwarê te bî.'*

Jiyaneke di vê atmosferê de û ligel serwêrekî weha ê ku şair û ronakbîran dihesibîne û diparêze ruhê Mela jî geş û azad kiriye:

*'Gulî baxê iremî Bihtan im*
*Şebçiraxî şebî Kurdistan im'*

Di pêvajoya hetanî dema Xanî de dewleta Osmanî zêdetir têkilî kar û barê mîrektiyên kurd bûye û bi her awayî hewl daye ku wan bi yekser bike bin nîrê xwe. Bi ser de di şerên Osmanî û Îraniyan yên wê demê de gelek ziyan gihîştiye herêmên kurd û tevahiya welêt bi peymana Qesrî Şîrîn hatiye parçekirin. Pêre jî Osmaniyan êriş birine ser Bidlîsê ya ku di nav mîrektiyên kurdan de xwedî cihekî qedirbilind bû û mîrên wê jî ji herêmê bidûrxistin.

Ehmedê Xanî yê ku di vê rewşê de jiyabû, her çiqas bi hewesa 'kimyageriyê' banga yekitiyê kiriye û hewl daye ku civaka wî rizgar bibe, lê wî bona vê armancê 'serfirazekî sahibkerem' yê ku ji dil û can guh bida ramanên wî nedît. Bi cudahiya ji rewşa ruhê di şiira Mela de vê tengezariya civaka Xanî bandoreke xemgînî li ser helbestên wî hiştiye.



# Lehengê kurd yê avakarê Ermenîstanê

**Sedat Ulugana**

Di dîrokê de, ji peydabûna ola ezdiyatiyê heya roja îro bi sedan car kurdên ezdî, rastî êrîşên giran hatine, lê tu caran serî li ber dijminên xwe dananîne û gelek caran mînakên lehengiyên bêhempa dane nîşan. Ji van mînakan yek jî lehengiyên Cangîr Axayê Ezdî ne ku beriya sed salan qewimî ne. Ew tenê ne bo gelê xwe, ji bo gelê êrmenî jî îro wek "lehengekî netewî" tê qebûlkirin.

Di destpêka sedsala 20'an de di navbera gelên rojhilatî de ji ber berjewendiyên desthilatdaran hin pêvçûn rû didin ku ev pevçûn piştre vedigerin kuştinên komî. Gelê êrmenî jî di van salan de nesîbê xwe ji van komkujiyan digire. Wek wan bi hezaran kurd, bi taybetî ezdî jî ji aliyê leşkerên Osmanî û alîgirên wan ve têne kuştin. Di van salên dijwar de wek ermeniyan, êlên kurdên êzdî jî neçar dimînîn û ji deverên xwe koçî ber bi sînorên Rûsyayê dikin. Êla Hesenan û Sîpkan du heb ji van êlan in,

Lê êla Cangîr Axayê kurê Xetîp Axa, gundên xwe yên devera Bêgirîyê bernedidan û li hemberî Osmanî û Alayên Hemîdiyê şer dikir. Şerên wan heya dawiya Şerê Cîhanê yê Yekem berdewam dike. Dema ku Rûsya ji Serhedê vedikişe, ew jî neçar dimînin û bi êlkî berê xwe didin welatên ku di bin desthilatdariya 'Ûris' de ne.





### Mêrê hewar û gaziyan

Cangîr Axa di sala 1874'an de li navçeya Wanê ya bi navê Bêgiriyê tê dinê. Bavê wî Xetîp Axayê Zurkî ye. Xetîp Axa, di nav axayên di havirdora Gola Wanê de mirovê herî dewlemend bûye. Hem di nav eşîrên kurd û hem jî ji aliyê rêvebirên tirk ve hatiye hezkirin ku û ew di nav dukumanên Osmaniyan de wek "midûrê eşîrên ezdî yên li devera Bêgiriyê" hatiye peywirdarkirin. Piştî mirina Xetîp Axa (1901) Cangîrê kurê wî axatiyê hildide ser xwe. Di heman belgeyên Osmaniyan de eşkere ye ku Cangîr Axa ji bo vê peyvirê, ji dewleta Osmanî meaş sitandiye.

Cangîr Axa, li ser damezirandina Alayên Hemîdiyê mirovên êla xwe bi çek dike ku ew dizane ku rewşa dewlata Osmanî wê xirab bibe. ji destpêkê heya sala 1913'an, ew jî bi şervanên xwe ve beşdarî Alayên Hemîdiyê dibe. Lê piştî serhildana Mele Selîm ya ku di heman salê de diqewime dibîne ku dewleta Osmanî peyê lîstikan e. Di sala 1914'an de dikeve nav tevgerê da ku li dijî teq û dolabên Osmaniyan hêzeke biavirîne. Di encama van hevildanên xwe de, bi Sîmko Axayê Şîkak, Şekir Axayê Hertoşî, Tahir Begê Qelenî û Ebdurezzak Bedirxan re têkiliyeke xurt datîne. Di heman salê de şerê Cihanê yê Yekemîn destpê dike. Rewş, ji bo ezdî û ermeniyan xirab dibe. Di van salan de 'Ûris', tevahiya Serhedê dagir dike. Bi leşkerên Rûrisî re hêzên ermeniyan û Ebdurezzak Bedirxan jî têne Serhedê. Bi beşrdariya Serleşkerê ermenî Antranîk Paşa, Ebdurezzak Bedirxan û Cangîr Axa di bin fermandariya generalê Rûrisî de artêşeke hevpar tê damezirandin. Artêşa hevpar, bi taybeti li dijî Alayên Hemîdiyê û leşkerên Osmanî yên girêdayî qolordiya di bin fermana Kazim Karabekîr de şer dike û li hin deveran wan têk dibe.

Di sala 1917'an de li Rûsyayê Şoreşa October'e pêk tê û li ser vê yekê Rûsya, hêzên xwe yên leşkeri, ji deverên Serhedê vedikşîne. Artêşa hevpar bi tenê dimîne. Di vê navberê de ji bo kurdên ezdî û ermeniyan xetereyeke mezin çê dibe. Li ser vê vekişandinê, leşkerên Osmanî dikevin deverên ku kurdên êzdî û ermenî lê dijîn û dest bi kuştinan dikin. Piştî demekê Antranîk Paşa tevî leşkerên xwe yên êrmenî diçe hewara êrmeniyan. Cangîr Axa demekê li ber xwe dide lê di dawiyê de xeberê hildide ku êlên ezdiyan li hin deverên Wanê, di bin dorpêça leşkerên Osmaniyan de asê mane. Di van rojan de, êrîşên Cangîr Axa yên ji bo xelaskirina kurdên ezdî hewceyê pesna ne. Bi beşdariya 300 şervanên bijarte êrişê dibe ser Keleha Wanê û bi sedan êsîrên kurd û ermenî xilas dike. Ji ber vê yekê jê re gotine "Cangîr Axa, mêrê hewar û gaziya ne."

Helbet dengbêj jî wî ji bîr nakin û bi awayekî bê minnet, li ser wî jî stranan dirêsin û distrên. Ji van stranan yek jî sitrana Dengbêj Reşo ya bi navê "Kekê Fetila" ye. Dengbêjekî din jî, Şibliyê Çaçan e ku di Radyoya Erîwanê de li ser heman mijarê stranek straye ku di vê sitranê de jî Cangîr Axa "Siwarê Gawir Hirço" ye.

Dema ku eşkere dibe ku Fetilah navê lawê Cangîr Axa yê mezin e, "Gawir Hirço" jî navê hespê wî bû ye. Dengbêjan bi taybetî di vir de jî rîtûela "law" û "hesp" bikaraniyê û bi lêhengiya wî ve gire daye. Cangîr Axa êsîrên ku ji destê Osmaniyan xilas dike, ber bi sînorê Rûsyayê ve dibe. Li devera Geliyê Zîlan, Qûlîxan Axa yê ku serleşkerê alayeke Hemîdiyê ye, pêşiya êsîrên kurdên êzdî digire û nahêle ku ew derbasî aliyê Ebexê (Çaldêran) bibin.

### Şerê serdarivê û avakirina Ermenîstanê

Dema ku kurdên ezdî û ermenî derbasî Ermenîstanê dibin (1918) li wir jî rastî êrîşên leşkerên tirk tên. Dema leşkerên rûs ji herêmên Qafqasyayê vedikişin, leşkerên tirk yên ku di bin fermana Kazim Karabekîr de ne, dikevin Ermenîstanê. Armanca wan ew bû ku li vir kurd û ermenî bi tevahî bêne kuştin û bi vî şiklî avakirina Ermenîstanê asteng bibe. Careke din Cangîr Axa û Antranîk Paşa li hev rûdinin û li hemberî leşkerên tirkan şer dikin. Jimara leşkerên tirk, tevî alîgirên wan, alayên ku eşîran afirandine nêzî 10 hezar kesî ye.

Li beramberî vê jimara hêzên ermenî 4 hezar e ku jê hezar kes jî kurdên êzdî ne. Di destpêka şer de, tirk li nêzikî Erîvanê, li gundê Sîpan û Baysizê bi sedan kurdên ezdi dikujin. Di dawiyê de leşkerên Cangîr Axa û Antranîk Paşa tirkan di vir dedixin dorpêça xwe û wan carek din têk dibin. Bi sedan leşkerên tirk dikujin û dîl digrin. Dewleta tirk ya nû, bêgav dimîne û bi şandeya ermeniyan re Peymana Gumriyê îmze dike. Bi vî şiklî Komara Ermenîstanê tê damezirandin.

Lê helbet piştî damezirandina Ermenîstanê jî pirsgirêk naqedîn. Bi hezaran ermenî û kurdên ezdî tî û birçî li kolanên bajêr û gundên xirbe dijîn. Piştî demekê nexweşiya qolerayê dest pê dike û bi hezaran kes ji ber vê nexweşiyê jiyana xwe jidest didin. Ji ber şer û komkujiyan, bi sedan zarokên kurd jî sêwî dimînin. Piştî Şoreşa Oktoberê, hêzên sosyalîst dîsa di nav welatên Qafqasyayê de belav dibin ku di nav wan de nivîskarê yekem yê romana kurdî Ereb Şemo jî heye. Di sala 1922'yan de Ermenîstan tevî Yekîtiya Komarên Sosyalîst yên Sovyetan dibe. Bi vê peymanê re rewşa aborî aram dibe û bo sêwiyên kurd sêwîxaneyek tê amadekirin ku di vê sêwîxaneyê de rewşenbîr û kurdologên kurd Emînê Evdal û Heciyê Cindî jî star dibin.

### Zext, mişextî, asîmîlasyon û tunekirin

Piştî ku Ermenîstan biryara tevlêbûna Sovyetan dide, netewperestên ermenî yên wek Antranîk Paşa rastî zextên Partiya Qominîst tên. Ji ber van şertên dijwar, Antranîk Paşa koçî Emerîkayê dike û hevalê wî yê şerên dijwar Cangîr Axa li Ermenîstanê bi tenê dimîne. Her ku diçe zextên partiya Qominîstan li ser wî jî bandoreke giran dike.

Bandora wî ya li ser êlên kurd, wek dijeyatiya rejima sosyalist tê nirxandin û wî ji kurdan îzole dikin. Li gor kurdan sedema van zextan xwestekên dewleta tirk in ku dewleta tirk ew li nêzî sînorên xwe nedixwastin. Di destpêka desthilatdariya Stalîn de, wek hemû kêmnetewan, kurd jî rastî zextên Stalîn tên. Bi taybetî kurdên ku li ser sînorên Tirkiyê bicîh bûne tên mişextkirin.

Di sala 1936'an de vê carê rewşenbîr û mezînên gelên kêmnetew û yên ku li ser wan gumana netewperestiyê heye, ji cîhên wan têne qewirandin an jî darizandin. Di wan salan de sêwîyên Sêwîxaneya Kurdan, Emînê Evdal û Heciyê Cindî jî êdî mezîn bûne û bûne kurdzan û xwende. Ji berk u di derbarê wan de jî gumana netewperestiya kurdiyetiyê heye tên darizandin û pişt re jî têne girtin. Lê Stalîn, ji bo Ereb Şemo yê Sosyalîst yê ku wî di romana xwe ya bi navê "Şivanê Kurmanca" de dijmintiya axayên wek Cangîr Axa dike, tawanê girtinê biçûk dîbîne, tevî Cangîr Axa bi tevahî mişextê Sîbîryayê tê kirin.

Cangîr Axa di dawiya jiyaneke zor û zehmetî lê tijî rûmet, di sala 1943'yan de li Sîbîryayê diçe ser dilovaniya xwe. Ereb Şemo jî piştî mirina Stalîn paşê dikare vegere Ermenîstanê. Di van salên dawî de careke din dewleta Ermenîstanê li navê Cangîr Axa xwedî derketiye û li Erîvanê navê wî daye dibistaneke leşkerî û paş ve jî peykerekî wî li heman bajaran çikandiye.

## Weşangeriya kurdî bi giranî wêje ye

# Bo wêşangeran yekîtî pêwîst e

Mijdîn Memdûh

Dosya ya di derbarê weşangeriya kurdî de vê hefteyê bi Weşanxaneya Lîsê berdewam e. Yek ji edîtor û xwediyê Weşanxaneya Lîsê Lal Laleş pirsên me bersivandin. Li gor Laleş, bo weşangeriya kurdî pirsgirêka herî mezin nebûna yekitiya weşangerên kurd e. Laleş di derbarê asta weşana kurdî de jî wiha got, “Weşanxaneyên kurdî pir kêm pirtûkên felsefeyî, hizirî, zanistî, civaknasî û hwd çap dikin. Em dikarin bibêjin ku weşangerîya kurdî weşangerîya wêjeyê ye, weşanxaneyên kurdî yên taybetmend tunene. Heta ku zimanê kurdî di tecrûbeya wergerê re derbas nebe, nikare bigîhîjê asta wêjeya cîhanê.”



***Weşangeriya Kurdî, tevî ku hejmara weşanxaneyan zêdetir bûye û hin derfet ji berê baştir bûne niha di çi halî de ye?***

Her çiqasî weşangeriya Kurdî di van 10-15 salên dawî de bi pêş ketibe jî, rewş bi tevahî xerab e; weşanxane zêdetir dibin û pirtûk pirtir dibin lê ast her ew e, yanî em nikarin behsa pêşketineke ewqasî xurt û berbiçav bikin.

***Xwendina pirtûkên kurdî li çi astê ye? Firotina pirtûkan têrî xwe fînansebûna weşanxaneyan dike yan na?***

Tu dikarî bibêjî ku asta xwendinê pir kêm e, yanî mesele nayê pîvan. Xwînerê kurd li gorî nifûsa kurdan pir kêm e. Em dikarin behsa hewldana afirandina xwînerekî kurd bikin û jixwe ev e barê herî giran ê weşanxaneyên kurdî. Ji bo meseleya fînansebûnê jî, em dikarin bi awayekî vekirî bibêjin ku tiştekî bi navê xwefînansebûnê tuneye di nava weşangerîya kurdî de, çunku -wekî ku me li jor da diyarkirin- xwînerên kurd kêm in! Ma avahî bê bingeh û stûn tê lêkirin? Piranîya weşanxaneyên kurdî li ser pişta xwedîyên xwe û hinekî jî firotina pirtûkan dijîn, wekî din tiştek tuneye, mixabin!

***Di warê belavkirin û bazarê de pirsgirêkên ku weşanxaneyên kurdî rû bi rûyî wan in çi ne?***

Me li jor da xuyakirin ku pirtûkên kurdî ewqasî nayên xwestin, heta ku em bikarin behsa bazar mazaran bikin, lê dîsa jî, sazî û karcivên kurdî yên ku karê firtotina pirtûkan bi rêk û pêk bikin pir hindik in. Firotin bi giranî li gor şêwazên kevn û tozgirtî pêk tê û ev yek kambaxî ye. Yanî wekî mînak, reklameke xurt û hêja ji pirtûkan re nayê kirin, heger pirtûk bi kalîte be jî!

Xwînerên kurd zêdetir çi dixwînin? (Wêje, felsefe, dîrok, civaknasî, psîkolojî hwd.)

Xwîner bêhtir pirtûkên fêrkirina zimên, wêje û dîrokê dixwînin, jixwe piranîya pirtûkên kurdî ku tên çapkirin pirtûkên wêje û dîrokê ne. Weşanxaneyên kurdî pir kêm pirtûkên felsefeyî, hizirî, zanistî, civaknasî û hwd çap dikin. Em dikarin bibêjin ku weşangerîya kurdî weşangerîya wêjeyê ye, weşanxaneyên kurdî yên taybetmend tunene. Yanî li ba miletên din, weşanxaneyên taybet bi pirtûkên zanistî, felsefeyî, hizirî, pirtûkên zarokan, pirtûkên wergerê hwd hene,


Lal Laleş

lê ev yek li ba kurdan tuneye, ev yek jî di serî de ji ber derfetên madî ye.

***Sazî û partîyên kurdan, şaredarî û dezgehên din û nêzikahîya wan a li hemberî weşangerîya kurdî çawa ye?***

Di vî warî de, tevlihevîyeke mezin heye, ji ber ku sazî, partî, şaredarî û dezgehên kurd tu carî li hev rûneniştine û li ser problemên weşangerîya kurdî nepeyivîne, mirov nikare tesbît bike ku dîtina hemû alîyan a di der barê weşangerîya kurdî de çi ye? Li vê derê, em dîsa pê dihisin ku pêdivî yekser bi yekîtîyeke weşangerên kurd heye, heger weşanger karibin li hev bicivin û xwe bi rêxistin bikin, di bawerîya me de, ew ê sazî, partî, şaredarî û dezgehên kurd hewl bidin ku alî weşanxaneyan bikin. Têkilîyeke ewqasî xurt û qayîm tuneye, yanî heta niha yekîtîyeke weşangerên kurd tuneye, heger yekîtîyeke weşangerên kurd hebûya, dê karê weşangerîya kurdî bi pergal bûya û dê feydeyeke hevbeş li hemûyan bibûya û dê rewşa zimanê kurdî berî her tiştî bi pêş ve biçûya. Yanî îroj dewleteke kurdî tuneye û barê standardkirina zimanê kurdî berî her kesî dikeve ser milên weşanxaneyên kurdî.

***Li gor we astengîya sereke ya li ber weşangeriya kurdî çi ye û pêşnîyzên we çi ne?***

Astengiya sereke, wekî ku me got, tunebûna xwîneran e, ev yek jî nayê çareserkirin heta ku rewşa siyasî ya kurdan li Bakur neyê guhertin û zimanê kurdî nebe zimanekî fermî. Bazara zimanê kurdî tuneye û kurd ji ber vê yekê guh nadin zimanê xwe! Her weha divê em balê bikişînin ser nizmbûna asta nivîskarîya kurdî jî, Hîn nivîskariya kurdî nikare hevrikîya nivîskariya cîhanî bike, Ev yek jî ne ji ber kêmbûna berheman e bi qasî ku sedem nizmbûna asta nivîskariyê ye; nivîskarîya kurdî mehkûma dubarekirinê ye û nivîskarên kurd dûrî teknîk û hunerên wêjeyê ne, Em vê yekê wekî xwîner dibêjin, berî ku em wekî weşanger bibêjin! Pêşniyaza me jî ew e ku weşanxaneyên kurdî û sazîyên kurdî yên têkildarî zimên milên xwe bidin hev û bi komkarî tevbigerin; ev nayê wateya ku her saziyek an weşanxaneyek kesayetiya xwe winda bike û xwe bihelîne di nava karê komî de, lê em li vir behsa birêkûpêkkirina weşangerîya kurdî dikin, ji bo ku rewş baştir bibe û ziman jî bi pêş bikeve.

***Weşanxaneyên tirkan jî dest bi weşana kurdî kiriye. Hûn vê çawa dinirxînin û ji bo weşanxaneyên kurdî çi girîngiya vê heye?***

Bi nêrîna me ev yek baş e, çiqasî kar berfirehtir bibe dê baş be, lê divê weşanxaneyên tirk di warê zimên de gelekî baldar bin, ziman bi awayekî dirust bi kar bînin û bi kesên ku ziyanê nedin zimanê kurdî re bixebitin.

## Weşanxaneya Lîs

Weşanxaneya Lîsê di sala 2004’an de li Amedê hate damezirandin. Weşanxaneyê heta niha nêzî 200 berhemên kurdî yên mîna roman, kurteçîrok, helbest, dîrok, rojnamegerî, olzanî, zimanzanî, pirtûkên zarokan û hwd weşandine. Weşanxaneya me giraniyê dide wergerandina klasîk û berhemên giregirên cîhanê. Ji ber ku em wisa hizir dikin ku heta zimanê kurdî di tecrubeya wergerê re derbas nebe û xwe ji hêla zimanî û wêjeyî ve dewlemend neke û nivîskar û xwînerên kurd wêjeya cîhanî bi zimanê xwe nexwînin; dê wêjeya kurdî tu carî gavên berbiçav neavêje. Weşanxaneya Lîsê heta niha wergera kurdî ya bi dehan nivîskarên herî navdar ên cîhanî weşandiye, mîna berhemên W. Shakespeare, F. Kafka, C. Lamb, O.Henry, W. Blake, Selîm Berekat, Yaşar Kamal û hwd. Her weha Weşanxaneya Lîsê dê di dema hatî de hin gavên mezin biavêje di warê weşandina klasîkên kurdî û wergerên giranbiha yên cîhanî de bi hêviya ku guhertinekê di meydana weşangerîya kurdî de bide afirandin.





# Govarek li Sergoyê Qereçobanê

O. F. Baran

Tê gotin ku sergo her sergo ye, tu caran bi ser banan nakeve. Yanî qir û qafên ku kebaniyên malan diavêjin, kurtêl, hûrik mûrikên xwarinan, avrî û devriyên hinekan, cil û cawên ku kêrî kesî nayên, yan qaşo ji wan çêtir, fikrên azadî û serxwebûna welatan, ku çiqas pir bin, çiqas ser hev kevin jî li sergoyan, bilindahiya wan sergoyan nagihîne banan. Çinku li ber çavên însanan esîl in ban, çinku ciyên xweser î orîjînal in, ne wek sergoyên genî û gemarî ne. Lê dîsa jî ku ne bi qasî yên banan bin jî xêr û xweşî û hevî ji bo sergoyan jî hene, gaza metanê mesela û elbet ew gulên li ser wan şîn tên. Çöplük, bi kurt û kurmanciya wê, sergo yanî, yanî gula ku jê bêhna wêjeyeke esîl î herêmî tê, li Qereçebona Erziromê salê carekê şîn tê. Nêta gulê heye ku bêhna xwe ya wêjeyî û çandî li seranserê welêt belav bike lê derfetên sergoyê rê li ber bêhna gula govarî digirin. Gul, pênc sal in, bi du zimanan, bi Kurdî û Tirkî şîn tê û şêniyên Qereçebonê gava ku vedikin gula sergoyê dixwînin, bi ecêbmayineke êdî pir klasîk û pir klîşe ye li nivîsên Kurdî dinêrin.




**Berê fanzîn bû**

Çöplük, di sala 2008an de berê bêhna xwe wek fanzînekê belav dike. Herdu hêjmarên ewil bi fotokopiyê têne derxistin. Di van herdu hêjmarên ewil de armanca fanzînê ew e ku xwe berê bigihîne xwendekaran, bi taybetî jî yên lîseyê. Piştî serkeftina vê yekê, di hêjmara sêyem de fanzîn xwe diguherîne dike govar û îcar jî dixwaze xwe bigihîne hemû gelê Qereçobanê. Govar di vê yekê de jî ser dikeve, îro ku ne hemû gel be jî gelek kesên li navçeyê govarê dişopînin. Li gor edîtorê govarê Abdurrahman Elçek ev yek tiştekî pir girîng e, çinku tevî ku sal 2014 e jî gelek niştecihên navçeyê cara yekem bi xêra govarê nivîsên Kurdî dibînin û bawer nakin ku ev tiştên dixwînin bi Kurdî ne.

Amatorî wêrek dike

Her çiqas him ji aliyê mîzanpajê ve him ji aliyê naverokê ve govar ji gelek govarên wêjeyî û çandî çêtir û pêtir e jî edîtorê govarê xwe li amatoriyeke profesyonel datîne û wiha dibêje: ‘’Em dikarin bibêjin ku Çöplükê hê bingeha xwe nedîtiye.Hê hêjmarên wî bi ruhekî amatorî ve têne amadekirin. Ya rast em dixwazin ku bila govara me bi aliyekî ve jî hinekî amator bimîne. Amatorî nezaniyê dide me û ev jî me wêrek dike. Em hez dikin hinek tiştên nû biceribînin. Heta derfetên me hebin em ê tiştekî bikin. Bi taybetî ji bo zimanê kurdî. Tenê ev tişt heyecanekê dide min. ’’

**Nivîsên dirêj nayên xwendin**

Ji wan tiştên nû û ceribandinê qestek, belkî mabestek jî dirêjiya nivîsan e. Li gor edîtorê govarê Abdurrahman Elçek, nivîsên di govaran çiqas baş bin jî gava ku dirêj bin pir nayên xwendin. Ji ber vê yekê bi qasî ji dest wan tê nivîsan di formatên kin de amade dikin. Gotina ku ji bo govarê formulîze bûye ev e: ‘’Govarek gerek têr û tije be lê însanan jî pir tengezar neke’’

**Havîn û zivistan û navnîşana govarê**

Govar niha salê carekê dertê, heta niha pênc hêjmarên govarê derketine. Lê xebatkarên govarê dil hene carê zivistanê carê jî havînê, şeş mehan carê govarê derxînin. Hejmara dawî vê havînê derketiye û eger derfet çêbibin dê li ser hêjmara zivistanê bixebitin. Govar ji ber navê xwe, wek tiştên li ser sergoyê belaş e. Kesên dixwazin di ser riya internetê re herin sergoyê û çîrok, helbest, pexşan û nivîsên din ên belaş rakin bixwînin di demeke nêz de dikarin www.coplukdergisi.blogspot.com ê binêrîn û yên ku dixwazin tiştêkî biavêjin ser sergoyê dikarin biavêjin ser coplukdergisi@gmail.com ê.

**Pêşgotina hêjmara dawî**

Berî hûn tiştekî ji ser sergoyê rakin an tiştekî biavêjine ser sergoyê, hêjmara ku vê havînê derketiye di pêşgotina xwe de silavan li we û hêjmara şeşem dike: ‘’Em wisa hêvî dikin ku di demeke kurt de govara me yê bi rengekî xweştir û bi naverokeke dewlemendtir derê pêşberê we. Em qetreyek in ji behra vî zimanî û em hez dikin ku tevlî behrekê bibin. Çavniqandinek. Bêhna çoplikekê hate we gelo? Bimînin di xêr û xweşiyê de.’’

# 'Zarema' got postkoloniyalîzm!

Govara Zarema ku beriya pênç heyvan ji hêla hin nivîskar û xwendevanên kurd ve dest bi weşanê kiribû hejmara xwe ya duyemîn derxist. Govara Zarema ku edebiyat, sînema, muzîk, siyaset, sosyolojî, civaknasî ji xwe re dike mijar, di vê hejmarê de cîh daye Teoriyên Kolonyolazîm û Postkolanyalîzmê ku vê yekê jî ji ber mafên gelen bindest epîstomolojiyeke xûrt avakiriye.

Edîtoriya govarê mijara vê hejmarê waha terîf dike: “Gava ku em li gazin û becaretiyen civaka kurd dinerin, li kesayetiyên ku derketine hole, li hêvi û bêhevitiyên civakê dinêrin rewşeke giran a kolînîbûneke hemdem derdikeve hemberi me. Her ciqas meseleya kolonîbûna Kurdistanê di her firsendê de bê ser ziman jî, ji ber sendromen giran û bêtaqetiyê, weke ku civak baweriyeke tam bi ve yeke nayine. Belki ji ber ve yeke ye ku axlebe li Bakûr, heviye ji dagirkeren xwe nabirin; di her behiquqi û qetlîame de bextê xwe davejin têkîliyên xwe yen adetî, serî li têgehen mîna “bihevrebûna bi sedan salan”, “goşt û neynûk” an ji “biratiyê” didin; ji bir dikin ku diroka dagirkerên wan dirokeke wiha ye ku ji bo serdestiyê qetla birayan meşrû dibine, tênagêhên ku zilma li ser wan ji xwe zilmeke adeti ye. Kurd di nav hiquqekê de ku wan tune hisab dike û li ser tunekirina wan ava buye, giliyen xwe li qesasên xwe dikin, li heviyê ne ku li wan ben rihmê”

Ji avakar û nivîskarên govarê Mehmet Şarman derbarê govarê de wiha dibêje: “Îro disa bi hezaran kurdên ezdî ji ber êrîşên terorîstan cih û warê xwe terk kirine û xwe sipartine birayên xwe. Her çiqas çekdarên kurd hewl bidin wan biparêzin jî ji ber nebûna artês û dewleteke serbixwe ya kurdî zulm li ser kurdan kêm nabe. Tam di demeke wisa de govara Zarema li ser çavkaniyên postkolonyolîzmê bi gotarên dagirtî û xurt rewşa kurdan nirxandiye. Di vê hejmarê de gelek nivîskar û akademîsyen ku li zankoyên navdar wezîfedar in nivîsîne.” Şarman di wê baweriyê de ye ku di axaftin û guftûgoyên kurdan de ev mijar têra xwe dernayê pêş û madem Kurdistan weletekî dagirkirî ye divê teqez mirov berê xwe bide kelepora van teoriyan. Şarman waha berdewam dike: “Digel hewqas tedayî ya li ser zimanê kurdî xebatên ku mirov bi wan serbilinde dertên. Ciwanên kurd bi helwdaneke bêhempa sergoyê teoriyên dagirkeran bi pênûsa xwe tevdidin ber bêjinga xwe.’




Şarman di derbarê wêjeya rexnegirî ya kurdî de jî wiha dibêje: “Edebiyat bê rexne nabe, hin caran rexne ji edebiyatê re dibe alikar, rêber hin caran jî pêşiya edebiyatê digirin."

## Her helbest xwedî melodiyeke

***Hûn li kêleka muzîkjeniyê helbestvan in jî. Di navbera muzîk û helbestê de çi têkilî heye?***

Têkiliya muzîk û helbestê hinekî mecbûrî ye. Wek mînak rîtm dilê muzîkê ye û bêyî rîtmê muzîk nabe. Di heman demê de helbest jî xwedî ahengeke rîtmîk e. Di helbestê de newa û awaz ligel hev ahengeke melodîk çêdikin. Bi taybetî di muzîka modern de ligel melodî û awazên karakterekî armonîk jî heye. Ev her sê şêwe tune bin em nikarin behsa zimanekî enstrumental ango muzîkal bikin. Di muzîka gelêrî de muzîk xwedî meqam e û meqam jî xwedî cihekî taybet e. Di helbestê de jî pîvan û wezin hêmanên bingehîn in. Ango mirov dikare bibêje helbest jî xwedî ahengeke taybet e. Di helbestê de taybetmendiya herî girîng ew e ku li şûna amûran peyv cîh digirin û bi vê re newaya helbestê tê avakirin. Her çiqas wek afirîneriyê ev herdu beşên hunerê bişibin hev jî muzîk xwedî karaktereke enstrumental e û esasên weke ziman û deng li gorî xwe bi kar tîne ku ev aliyên wê yên xweser in.



Li gorî min muzîk û helbest destebirayên hev in. Her helbest xwedî muzîkekê ye û her muzîk jî xwedî helbestekê ye. Tenê deng û peyv tên guhertin.Lewma her du jî xwedî îfade, rîtm û awaz in. Her du jî tiştekî bilêv dikin.Her helbest xwedî zimanekî melodîk e.

## Ez di rêwîtiya afirandina nasnameyeke hunerî de me

# Muzîk û helbest destbirayê hev in

**Aziz Tekin**

Mehmet Afşar, di sala 1984'an de li Cizîra Botan ji dayîk dibe, dû re di sala 1993'an de bi malbatî koçê Êlihê dikin. Ji dibistana seretayî hetanî zanîngehê li vî bajarê dixwîne. Afşar, di sala 1998'an de li Stenbolê dest bi muzîkê dike û li Êlihê bi vebûna Navenda Çanda Biharê re li wir dest bi mamostetiya muzîkê dike. Di heman demê de li bajarên wek Nisêbîn, Bismil, Qubîn, Sêrt û hwd. de jî mamostetiya muzîkê didomîne. Tişta muzîka Afşar derdixe pêş tarza wî ya resen, gotinên helbestî û qirika wî ya li gor klasîkan e. Afşar deriyê jiyan û muzîka xwe ji me re vekir.



**Muzîsyen û mamosteyê beşa muzîkê Mehmet Afşar bi albûma xwe ya bi navê 'Lîs' û pirtûka xwe ya helbestan ya bi navê 'Ramûsanên Xesandî' navê xwe li dika hunerê dinivîse.**

***We di hevpeyvîneke xwe de gotiye ku muzîkeke bedew, gotineke bedew heq dike, hûn dikarin vê hinekî vekin ?***

Di roja me de, rojava di pêşveçûna hunerê de wek model tê dîtin. Bi taybetî ji bo cîhana sêyemîn ango welatên feqîr wek model tê nîşandayîn. Dema em guhê xwe didin muzîka wan (bi taybetî yên klasîk) muzîkjen çîroka xwe, fikra xwe, rexneya xwe, pêşniyara xwe û wd. bi newayan tîne zimên, derdê xwe tenê bi muzîkê dibêje. Mozart, Bethowen û wd. mirov dikare mînak bide. Dema em li muzîka me ya kurdî dinêrin dengbêjî heye. Di dengbêjiyê de serpêhatiyên me, diroka me, wêjeya me bi gotinan ve tê vegotin. Di muzîka me de tişta herî girîng mijar e, dengxweşî û awaz helbet girîng e, lê ya rast mijar û naveroka stranê û gotinên stranê girîngtir in. Demên berê amûr pir nedihatin bikaranîn, heger hatibe bikaranîn jî weke rengekî bi armanca estetîkê mirov dikare bibîne, ya muhîm gotina stranê û mijara wê ye. Ez dibêjim muzîk bi tena serê xwe çiqas xweş be jî dîsa gotineke xweş pêwîst e, ji ber ku em jiyanê bi hev re parve dikin û ev rastî di çanda me de jî heye.

***We li gelek bajaran xebatên muzîkê meşandine.Vê pêvajoyê bandoreke çawa li ser muzîka we kir?***

Rast e. Ez li gelek bajarên welat wek muzîkjenekî û mamosteyekî xebitîm. Di gelek saziyên çand û hunerê de me xebat meşandin. Ez vê rewşê weke avantajekê dinirxînim. Ji ber ku ev bû sedem da ku ez civakê ji hêla muzîkê vê baştir nasbikim. Her herêmeke Kurdistanê bi serê xwe xwedî taybetmendiyên cihê ye.Wek Botan, Xerzan, Amed, Serhed, Behdînan, Soran... ku xwedî gewriyên cihê ne. Çêj û tehmên wan cihê ne. Lê di heman demê de dewlemendiyên welat in. Bandora van tecrûbeyan li ser berhema min bû û wê bibe jî. Ji ber ku ez hewl didim ku ji çanda xwe bibînim.

***Ku meriv guh dide muzîka we, tehma hunêra klasîk jê tê û ev bi şêweyeke nû hatiye honandin, hûn muzîka xwe, terza xwe çawa binavdikin?***

Ez wek kesekî dibêjim ku hilberînên mirov ji danehevên mirov pêk tên. Anku tiştên ku mirov dibîne,dib ihîze,dixwîne,dikişîne û hwd. Ev serpêhatî û danehev di hilberînê de xwe tîne zimên. Ya rast ez xwe bi nav nakim. Xebatên xwe wekî ceribandin dibînim. Di berhema min ya bi navê "Lîs" ku di 2012'an de ji Kom Muzîk'ê derketî de hem tehmên klasîk yên herêmî hem jî newayên di forma qesîdeyan de jî hene. Her wiha hûn dikarin tahmên muzîkên rojavayî jî seh bikin wek; cazz, blues û rock. Ez di rêwîtiya afirandina nasnameyeke hunerî de me. Ji klasîkên kurdî hêzeke mezin digirim. Dikarim bêjim ku gelek çîrok û serpêhatiyên me ji stranan hîn bûme.

***Li ser muzîka kurdî rexne û şîroveyên xitimîn û xwe dubarekirinê tên kirin. Hûn rewşa muzîka kurdî çawa dibînin?***

Heke em hemû xebatan wek 'huner' û hemû muzîkjenan jî wek 'hunermend' bi nav bikin, mixabin emê xwe bixapînin. Her berhemek bi serê xwe tehmeke, her stran jî li gor xwe jiyanek e. Eger derd û xemeke bimanekirinê hebe, pêwîst e pîvanên watedariyê jî diyar bin. Li gorî min xwe dubarekirin û xitimîn heye lê ev dubarekirin û xitimîn tenê di wan kesên ku hatine popularîzekirin de heye, di çand û muzîka me de jî popularîteyek hatiye avakirin û mixabin ew kesên populer xwe dubare dikin. Dema em li rewşa muzîkê dinêrin rexnegirên wê jê fahm nakin. Ji bo ku mirov karekî rexne bike, divê mirov di wî karî de têgihîştî û serwext be. Ji pirsgirêkên muzîka kurdî yên bingehîn yek jî tunehiya rexnegirên pispor e. Divê mirov vê rastiyê qebûl bike ku çandeke erebesk tê afirandin, di nav vê rewşê de cihê afirînerî û muzîkên ne ji rêzê tune ye. Li ser êşên gel, li ser berdêlên gel û nirxan çandeke qirêj tê avakirin û dixwazin vê qirêjiyê di pîroziyên gel de bişon. Huner xwe dubare nake, ya ku ez dibînim huner bi darê zorê/pereyan tê dubarekirin..

***Piştî ku we ji xwe re 'Lîs'ek avakir, di rojên pêş de hûn ê çi xebatan bikin, projeyên we yên muzîk û helbestê çi ne?***

Di destê min de xebata min ya muzîkê heye. Ez hewl didim ku wê bi encam bikim. Albûma xwe ya duyem di pêşerojê de derxim. Dîsa xebatên min li ser muzîkên herêmî hene. Helbestan jî dinivîsim û dixwînim. Li gor min helbest û muzîk du pêdiviyên bingehîn in, wek nan û av pêwîst in. Ev demeke nêze ku pirtûka mina yekemîn ya bi navê 'Ramûsanên Xesandî' ji Weşanxaneya Ronahî derket. Bi rastî li Kurdistanê xebata hunerê pîroz û pir zehmet e. Lê rastiyeke civaka me heye ku her hêlên wê tijî huner e. Di honandina vê hunerê de pêwîst e em bi hostayî tevbigerin. Hem ji hêla hunerî ve xwe pêşbixin hem ji rastiya xwe qut nekin.